

## 10 مامۆستایەکی قوتابخانەی مەولەی لە کوێلن:

# کە منداڵان فێری کوردی دەکەم دەحەسێمەوە

**Mijden:** Ez ne xwe û ne hunera xwe difiroşim

9




Hejmar / Nr. 127
22 Kanûn / Dezember 2011

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK


# Xweserî têr nake *referendûm pêwîst e!*

» Siyasetmedara naskirî Leyla Zana van rojan li Ewropayê ye û rêyên çareserkirina Pirsgirêka Kurd nîqaş dike. Zana ji Rûdawê re got ku êdî daxwaza "Xweseriya Demokratîk" ji bo Bakurê Kurdistanê têr nake

6 / 11

## Pêla binçavkirinan gihîşt rojnamegeran

Pêla girtin û binçavkirê xwe gihand sazî û dezgehên çapemeniya kurd. Hêzên ewlekariya dewletê li Stenbol, Enqere, Îzmir, Mêrsîn, Riha, Amed û Wanê, piraniya wan rojnameger, 58 kes desteser kirin. Gellek sazî û dezgehên navxweyî û navneteweyî bertek nîşan da. Li Wanê konê çapemeniyê jî bû hedefa serdegirtinê. M. Şefîq Oncu, Bekir Schwanî û Gabar Çiyan ku di rojnamegeriya kurdî de sê navên naskirî ne, geşedana dawî ji Rûdawê re nirxandin.

3






Îna borî (16.12.2011) li bajarê Amûdê yê li Rojavayê Kurdistanê dîsa bi hezaran Kurd daketin kolanan û rejîma Beşar Esad protesto kirin. Di nav xwepêşanderan de ciwanekî kurd sipasiya Rûdawê dike. Rûdaw bi berdewamî li ser malpera xwe (www.rudaw.net) û di nav rûpelên xwe de cihekî berfireh dide rewşa Kurdên li Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê.

4,5,14


**Sefereke bê perê bo Kurdistanê**

Kupon 127

5 rojnameyan bikire û biletekê qezenc bike

Nav û navnîşana we: ........................................
........................................
Telefona we: ........................................



5 kuponên ji hejmarên cûda yên Rûdawê bibire û ji vê navnîşanê re bişîne:

**Rûdaw Media GmbH**
- Tîrûpişk -
Gutenbergstr 63 a
50823 Köln / Almanya

Nav, navnîşan û telefona xwe ji bîr nekin

Bi sponsoriya **City Tower (Hewlêr)**

**Parêzer Uzun**
**Buroya Parêzeriyê**
Em li seranserê Almanyayê di xizmeta we de ne
*Agahiyên zêdetir* ▶7
Reklam








Great Britain



Nûçe, raport û hevpeyvînên taybet. Herroj, 24 saetan.
Rûdaw.net
www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

# Birakujiya Kurdan li Brîtanyayê

## Mehmûd li ser kuştina Keywan bi 12 sal zindan hat mahkûmkirin



**Brîtanya (Rûdaw) –** Penaberekî Kurd li Brîtanyayê bi cezayê zindana heta hetayê hat cezakirin, piştî ku dadgehê biryar da ku ew ji kuştina Kurdekî din berpirsyare.

Li gor raporeke malpera BBC, Mehmûd Îbrahîm Bekirê 29 salî bi zindana heta hetayê hat mahkûmkirin, piştî kifş bû ku wî bi kêrê Kurdekî 22 salî bi nave Keywan Xorşîd kuştiye.

Li gor rapora polîsan, Mehmûd û Keywan roja 27.01.2011 li teniştа garajeke otomobîlan sekinîn, şerê devkî kirin û Mehmûd kêrek li ser dilê Keywan xist. Herdu zilamên kurd berî wî şerî bi rojekê dîsa şerê hevdu kiribûn.

Li gor biryara dadgehê, Mehmûdê 29 salî divê heya dema 12 salan zindanî be, piştî 12 salan mafê wî heye ku daxwaza azadbûna xwe bike.



### Norwêc homoseksuelekî Kurd dişîne “malê“

# Azad: Eger ez vegerim kesûkarên min wê min bikujin

**Oslo (Rûdaw) -** Homoseksuelekî kurd yê ji Başûrê Kurdistanê ku li welatê Norwêcê daxwaza mafê penaberiyê kiriye, daxwaza wî ji aliyê wî welatî hatiye redkirin û ev şîret lê tê kirin: "Bila vegerê welatê xwe û li xwe miqate be".

Li gor raporeke rojnameya Aftenposten a norwêcî, Dadgeha Bilind a Norwêcê ew yek qebûl kiriye ku Azad Hesen Resûl penaxwazekî kurd yê homoseksuel e û jiyana kesên weke wî li Îraqê di xeterê de ye, herwiha metirsiya kuştinê jî li ser wan heye, lê dadgehê biryar daye ku ev têrî dayîna mafê penaberiyê nake û pêwîste Azad "xwe ligel kultur û adetên Îraqê biguncîne."

Herwiha berpirsên karûbarên penaberan li Norwêcê ragihandin ku metirsiyên ku kesên homoseksuel li Herêma Kurdistanî rastî wan tên, "gelekî kêmtirin" ji wan metirsiyên ku kesên homoseksuel li cihên din ên Îraqê rûberûyê wan dibin û Azad jî dikare daxwazê ji karbidestên Herêma Kurdistanê bike ku wî biparêzin.

John Martensone yê parêzerê Azad derbarê rewşa Azad de dibêje "biryara dadgehê bi şêweyekî praktîk tê wateya ku pêwîste Azad hîsên xwe yên seksî veşêre. Eger eşkere bibe wê rastî metirsî û îşkencedanê bibe." Azad derbarê pirsgirêka xwe de dibêje "wê kesûkarên min min bikujin, li Îraqê homoseksuelên nêr û mê jî nikarin bijîn." Li gor axaftina Azad "kuştina ser namûsê" yeke ji pirsgirêkên herî mezin ên Herêma Kurdistanê.

Ji sala 2006ê ve têkiliyeke Azad ya evîndariyê ligel xortekî norwêcî bi navê Od Arny Henrykson heye. Vî xortê norwêcî eşkere kiriye ku eger Azad bê dersînor kirin bo Herêma Kurdistanê, wê demê ewê jî ligel wî biçe Îraqê û dibêje "malbata me ewqas bi hesanî dest ji tiştan bernade, em heta dawiyê hewl didin." Azad ev 10 salin li Norwêcê dijî û li restoranteke bajarê Osloyê kar dike, zimanê norwêcî bi başî dizane û gellek hevalên wî yên norwêcî jî hene.

**Ji 50 serlêdanan 42 hatin redkirin**

Hikûmeta Norwêcê di nav du salên borî de ji serlêdanên 50 penaxwazên homoseksuel, 42ê wan redkirine. Wezareta Dadê ya Norwêcê jî ragihand ku ew hewldidin yasayan biguherînin, da ku bi şêweyekî cuda ligel penaxwazên homoseksuel tevbigerin. Parêzerê Azad, John Martenson derbarê vê yasayê de dibêje "karbidestên Norwêcî nabe ji her kesî re bibêje xwestekên xwe yên seksî veşêre û vegere welatê xwe. Norwêc divê serkêşiya wan welatan bike ku parastina hemû kesan dike, bêyî ku xwestek û arezûyên wan ên seksî li ber çavan bigire."

Komisyona Bilind a Neteweyên Yekgirtî bo Mafên Mirovan di meha Îlona borî de raporek derbarê rewşa homoseksuelên Îraqê weşand û tê de diyar kiriye ku li Îraqê hertimî gef li ser homoseksuelan hene.

Yehya Silo




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

© Hemû maf parastî ne

www.arshivakurd.org

Salihê Kevirbirî Koln

## Di operasyona li dijî rojnamegerên kurd de herî kêm 58 kes hatin binçavkirin

# “Stratejiya dewletê lawazkirin û pûçkirina Kurdan e!”



Wêne: DÎHA

Di pêvajoyeke ku li Tirkiyeyê rê li ber çareseriya pirsa kurdî hatiye girtin de, zextên li ser rêveber û endamên BDPê her ku diçe zêdetir dibin. Operasyonên ku di bin banê “Doza KCKê”de têne meşandin, di demên dawî de gihîştiye asta xwe ya rajorîn. Ji ber daxwaza parastina bi kurdî ya girtiyên ji Doza KCKê, pêvajoya dadgehkirinê gavek jî be bi pêş neketiye. Li hêla din operasyonên berfireh ên artêşa tirk, bi dijwarî berdewam in. BDPyiyên ku piştî operasyona li herêma Amedê xwestin derbasî hêla şer û pevçûnê bibin, ji aliyê hêzên leşkerî ve hatin berbendkirin. Dema ku ev nivîs dihate amadekirin, alozî berdewam bû. Di demeke wiha aloz de, li Stenbol, Enqere, Îzmir, Mêrsîn, Riha, Amed û Wanê sazî û dezgehên çapemeniya kurdan ku di nav wan de Ozgur Gundem, Ajansa Nûçeyan a Dîcleyê (DÎHA), Ajansa Nûçeyan a Etîkê, Çapxaneya Gun û Demokratik Modernite jî hebûn, bûn hedefa serdegirtina polîsan. Li gorî jêderkên destpêkê, herî kêm 58 rojnameger û kedkarên çapemeniya kurd hatin binçavkirin. Tê gotin ku di nav binçavkiriyan de nûçegihanê rojnameya Vatanê Çagdaş Ulus û nûçegihanê AFPê (Agence France Presse) Mustafa Ozer jî hene.

Arzû Demîr, Zeynep Kuray, Îsmaîl Yildiz, Sevînç Tuncellî, Dilek Demirel, Sadik Topaloglu, Kenan Kirikaya, Mazlum Ozdemir, Evrim Kepenek, Berxwedan Yarûk, Semîha Alankuş, Fatma Koçak, Çagdaş Kaplan, Zûhal Tekiner, Omer Çelîk, Nahîde Ermîş, Dîlek Demîrel, Davût Ûçar, Huseyîn Denîz, Şerafettîn Sumelî û Ertûş Bozkûrt ji wan rojnameger û kedkarên çapemeniyê ne ku di operasyona roja sêşemê de hatine binçavkirin.

M. Şefîq Oncu, Bekir Schwanî û Gabar Çiyan ku di rojnamegeriya kurdî de sê navên naskirî ne, derbarê operasyona dawî ya li ser rojnamegerên kurd de bîr û boçûnên xwe ji bo Rûdawê eşkere kirin.



### Bekir Schwanî: Ev kiryarên hikûmetê ji bo paşvexistin û derengxistina “bihareke kurdî” ya muhtemel, hewldan in

Ev bûyerên ku îro li Tirkiyeyê diqewimin, ji bûyerên “bihara ereban” zêde ne cuda ne, ango girêdayê hev in. Lê balkêşî ew e ku welatên ereban Tirkiyeyê ji xwe re wekî model dibînin. Ez wekî kesekî ku haya wî ji rojeva Tirkiye û cîhana erebî heye, dibêjim ku li cîhana erebî Tirkiye û hikûmeta AKPê zêde nayê zanîn. Naxwe bûyerên ku îro li Tirkiyê diqewimin, ji wan bûyeran in ku îro li Rojhilata Navîn bûne sedema “bihara erebî.” Tesîra bihara erebî roj bi roj li ser Tirkiye û bakur zêdetir dibe.

Li gorî baweriya min, ev kiryarên hikûmetê ji bo paşvexistin û derengxistina “bihareke kurdî” ya muhtemel, hewldan in. Ji ber ku li Tirkiyeyê bêhna biharekê tê! Gava ku rê li ber geşedana demokrasiyê bê girtin, helbet ji bilî raperîneke mîna li welatên ereban pêk hat, rêyeke din namîne. Mirov dikare operasyonên dawî yên şer û girtina rojnamegeran, bi rewşa giştî ya Bakur ve girê bide.

Xaleke balkêş jî ev e: AKP di hilbijartinên dawî de, li Kurdistanê gellek deng winda kirin. Heye ku partiya desthilatdar ketiye pey tola vê yekê! Gelek sazî hebûn ku bûn sedem ev yek pêk were. Pêşengên van saziyan bi piranî dezgehên çapemeniyê bûn.

Sedemeke din jî ev e ku Yekîtiya Ewropayê herdem çavdêriya Tirkiyeyê kiriye. Lê ji ber ku vê gavê Ewropa bi krîza aborî re rû bi rû ye, zêde nikare bala xwe bide rewşa binpêkirinên li Tirkiyeyê. Bêguman ev yek dibe sedem ku hêzên dewletê bi awayeke hêsantir çewisandinên xwe yên li ser medya û rojnamegeriyê pêk bînin. Di rewşên wiha de Ewropa, nexasim Almanya bertekên tûnd nîşan dide. Bi taybetî saziyên ragihandin, mafên mirovan û beşek ji partiyên siyasî, tişk diavêjin ser bûyerê û raya giştî haydar dikin.

Bangawaziya min ji bo rewşenbîr û rojnamegerên başûr û rojhilat ew e ku di rewşeke wiha dijwar de, li kêleka hevpîşeyên xwe cih bigirin. Divê ew camêrên hanê baş bizanibin ku bi qasî ew dizanin, li Tirkiyeyê rewşa azadiya derbirinê baş nîne. Raporên Konseya Ewropayê û dezgehên çapemeniyê bi me didin selmandin ku rewşa heyî li Tirkiyeyê xerab e.

Bêguman di navbera tundbûna siyaseta Hikûmeta Tirk û rewşa îro de pêwendiyên xurt hene. Di navbera israra şer, girtina siyasemedarên kurd ên hilbijartî, birêvebirên siyaseta qanûnî û girtin û serdegirtina dezgehên ragihandinê de têkiliyeke konseptî heye. Armanca hi-



### M. Şefîq Oncu: Refleksên dînamîkên Kurdan her diçe lawaz dibin. Ev yek jî berbiçav dike ku tirk di vê stratejiya nû de dikarin bi ser bikevin

Herçi çend rojnamegerên tirk jî di nava girtiyan de hene, pirayiya rojnamegerên hatine girtin Kurd in û dezgehên hatine serdegirtin dezgehên kurdî ne. Baweriya min ev e ku ev hewldan parçeyek ji konsepta Hikûmeta Tirk e. Hikûmet ev du sal in ku ji aliyekî ve behsa xwedêgiravî rêlibervekirina çareseriya Pirsa Kurd dike û li aliyê din ve jî bi hewldanên xwe rê li ber çareseriyê digire. Konsepta dewletê ev e ku miletê kurd ji statû û mafên hevpar bêpar bihêle. Ji bo serkeftina vê stratejiyê jî pêwîst e ku hemû dînamîkên dozê bêne pûçkirin. Hemû livên wê jî li gorî vê konseptê ne.

Roja ku hikûmeta AKPê behsa ''rêlibervebûnê'' kir, di Pirsa Kurd û mesela çareseriya wê de ne xwediyê konsepteke zelal bû. Piştî reaksiyon, nîqaş û ya girîngtir diyar bû ku Kurd bi çareseriyek bêstatû û mafên kolektîf razî nabin, hikûmet hat radeya biryarwergirtinê. Di encamê de hikûmetê xwe spart stratejiya bingehîn a dewletê. Di vê stratejiyê de li Tirkiyeyê cih ji bo gel an jî komeke etnîkî ya xwedî statû nîne. Erka stratejîk mihandin û jihevxistina grûbên ne Tirk in. Tirk navê vê yekê kirine întegrasyon!

kûmetê ew e ku kesek dernekeve pêşiya wê. Miletek bê siyasetmedar, bê birêveber, bê çapemenî bi hêsanî dikare hêsîr bê girtin. Bêguman haya hikûmetê ji vê yekê baş heye.

Hewce nake em bibêjin ku reaksiyonên li hemberî helwest û kiryarên hikûmetê gellekî lawaz û bê tesîr in. Dev ji yên navneteweyî û tirkan berdin, medya kurd jî di nava xemsariyê de ye. Em nikarin di noqteyên herî meşrû de jî xwe û mafên xwe biparêzin. Camêr dibêje, ez çi bixwazim ezê wiha bikim!

Mixabin refleksên dînamîkên kurdan her diçe lawaz dibin. Ev yek jî berbiçav dike ku Tirk di vê stratejiya nû de dikarin bi ser bikevin. Pirs ne tenê reaksiyona li hemberî girtin û operasyonan e, di têgihiştin û têderxistina konsepta Hikûmeta Tirk de qelsiyek heye. Hikûmet li gorî stratejiya dewletê, hedefên divê bêne lawazkirin û pûçkirin danîne ber xwe. Qet şik tuneye ku hemû dînamîkên di xizmeta Doza Kurdan de di hedefa Tirkan de ne. Qebûla “berê xwe nedaye min, ji min re çi” nîne. Dor wê bê ser herkes û her dezgeha ku di bidestxistina mafê miletê kurd de xwedî israr e. Divê ev rastî neyê jibîrkirin.



### Gabar Çiyan: Tiştê AKP tîne ziman û dike, bi nakokiyan barkirî ne.

Zagona Bingehîn a Tirkiyeyê rê li ber pêşketina demokrasî, rêzgirtina ji bo mafê mirovan û çareseriya “Pirsgirêka Kurd” digire. Hêzên dewletê bi rêya qanûnên heyî dikare pirr bi hêsanî mafê mirovan û sînorkirina azadiya çapemeniyê binpê bike. Heman qanûn mecalê didine hêzên ewlekariyê ku bigirin ser rojname, kovar û navendên televizyonên kurdan. Ne tenê medyaya nêzî BDPê, dikare gellek rojnameger-nivîskarên kurd û weşanên wan têkevin ber pêla hêzên ewlekariyê, bi cezeyên giran bêne cezakirin. “Zagona Şerê li dijî Terorê, bendên 6 û 7” destên hêzên dewletê xurt dike. Lêkolîneke sînorkirî eşkere dike ku 50-60 kes tenê ji ber zagona terorê di hepsê de ne. Bi operasyona dawî bêtirî 55 kesên din li wan zêde bûn. Ne tenê ez vê yekê dibejim, di raporên “Federasyona Navnetewî ya Rojnamegeran-IFJ” û “Rojnamegerên Sînornenas-RSF” û nirxandina pêşketinên li Tirkiyeyê ji bo endametiyê ya “Komîsyona Ewropayê” jî rexne li “Zagona Terorê” û bi taybetî li “Zagona Bingehîn” a Tirkiyeyê hatiye kirin. Divê muxalefeta kurd, bi taybetî jî bo jiholêrakirina “Zagona Terorê” û bi giştî ji bo guhertina “Zagona Bingehîn” xebatên xwe xurtir bikin.

Ji aliyê “Hiqûqa Navneteweyî” ve gavên têne avêtin, toreyî ne. Ji çarçoveya “Dadgeha Mafên Mirovan a Ewropayê” dernakevin. Divê li derve û li hundir qonaxekî nû ji aliyê hiqûqî ve destpê bike. Pêwîst e dezgeheke însanî pêk were ku operasyon û zextên bê hiqûqî bişopîne, bi belge bike û bibe ber destê dezgeh û dadgehên hiqûqî û însanî. Divê Kurd vê yekê bikin. Dema Tirkiye bi helwestên xwe yên bê hiqûqî bê dadgehkirin, wê nema karibe bi hêsanî operasyonê li dijî dezgehên çapemeniyê pêk bîne. Dezgehekî wisa şert e. Jê re têkiliyên navnetewî û neteweyî yê hiqûqî pêwîst in. Aboriyeke xurt jê re divê.

Gelê Tirkiyeyê bi xurtî dengê xwe daye Erdogan, siyaseta wî qebûl dikin. Divê êdî em vê rastiyê bipejirînin. Beşek ji Kurdan jî rayên xwe dane AKPê. Bêguman di çareseriya “Pirsgirêka Kurd” de tiştê AKP ê aniye ziman û tiştê dike, bi nakokiyan barkirî ne. Helbet kêmasiyên muxalefeta demokratîk a tirk û kurd jî hene.

Protestokirina neheqiyan destpêka kar e, lê tevahiya kar nîne. Gellek caran encamê jî bi dest naxe. Divê organîzasyonên ronakbîrî li dijî zilmê, ji bo şopandin û bidestxistina encamên erenî, çalakiyên li gorî rengê xwe, di wext û zemanên pêwîst de pêk bînin.

www.arsivakurdi.org

» Opozisyon hoşdariyê dide berpirsên Îraqî: Hûn ê di dahatûyê de berpirsyar bin

» Endamê Civata Nîştimaniya Sûriyê, Zuhêr Salim: Hikûmeta Îraqê ku zulma Baasiyan dîtiye niha di rêza Baasiyan de ye



# Siyasetmedarên opozîsyona Sûriyê ji helwesta Îraqê aciz in

**Hozan Royar**

Aliyên opozisyona Sûriyê bi nîgeranî berê xwe didin hevsoziya Hikûmeta Îraqê ligel rejîma desthilatdar a welatê wan û dibêjin: "Aliyên ku piştevaniya rejîma Esed dikin wê berpirsyar bin himber helwestên xwe."

Herçende bazineya derdora desthilata Sûriyê roj bo rojê tengtir dibe û civaka navnetewî roj bo rojê bi rêya ferzkirina cezayên cur be cur goşarên xwe ser vê rejîmê bêtir dike, lê helwesta du cîranên Sûriyê Îraq û Lubnan bale dikişîne: Ev herdu cîran ligel boçûna Erebî û navnetewî, li himber tevger û manorên rejîma Sûriyê heta niha deriyên xwe vekirî hîştine. Ev ji bilî Komara Îslamî ya Îranê ku hevpeymanê teqlîdê Esed e.

Helwesta Îraqê ya nehevgirtî ligel pêvajoya fKomkara Erebî meha borî di du helwestên cuda de bi eşkere derket holê. Yekem, dema Komkara Erebî bo rawestandina endametiya Sûriyê di civînên Komkara Erebî de deng da û duyem jî dema biryara ferzkirina hinek cezayan da ser rejîma Sûriyê. Îraqê ji van herdu biryaran yekê jî nepejirand. Îraq dibêje ku li pişt van biryarên Komkara Erebî faktorên tayifî li hene himber Sûriyê.

### "Îraqê bo panzer û tankên Sûriyê gazwayil şandiye"

Serokê Kongreya Sûrî bo guhertinan Dr. Amar El-Qurebî ku hevdem Serokê Rêxistina Niştiman ya mafê Mirovan e, derbarê helwesta Îraqê hember bûyerên Sûriyeyê bo Rûdawê got, "Ji helwesta Îraqê bêhneke pîs û genî ya tayîfî tê."

Qurebî di berdewamiya axaftina xwe de got, "Îraq ji destpêka şoreşa Sûriyê heta niha piştgiriya rejîma Sûriyê dike, berî her tiştî Îraqê nefta xwe ji bo panzer û tankên Sûriyê şand û wan jî gelê sivîl li Sûriyê kuştin. Duyem pere bi qaçaxî derbazî Sûriyê kirin da ku rejîma Esed karibe mûaşên Şebîheyên xwe bide. Sêyem Îraq ji bo gihandina teknolojiya Îranî bo tepeserkirina xwepêşandanan bûye rêyeke û deriyê sînor li ber Artêşa Mihdî vekir da ku bi hawara rejîma Esed biçin û şerê taîfî li Sûriyê gur bikin."

Destpêka vê hefteyê jî bi serokatiya Şêwirmendê Asayişa Nîştîmaniya Îraqê, Falih Feyaz şandeke Îraqî ji bo gotûbêja derbarê "destpêşxeriya Îraqê" çûye Sûriyê. Serokwezîrên Îraqê Nûrî Malikî ragihand ku ew dikare hikûmet û aliyên opozisyona Sûriye li ser maseyekê bicivîne, lê aliyên opozisyon û xwepîşanderan bi şêweyekî lezgîn ev daxuyaniyên Malikî retkirin.

Endamê Encûmena Niştimanî ya Sûriyê Zuhêr Salim rexneyên tund li daxuyaniyên hin berpirsên Îraqê girt ku daxwazê ji opozisyonê dikin danûstanan ligel Hikûmeta Sûriyê pêkbîne: "Em li dijî şoreşa gelê Îraqê derneketin û me ji wan re negot hûn xayîn in û me ji wan nexwest bi Saddam re gotûbêjan bikin, çima ew bi serê me wiha dikin, çima xwîna gelê Sûriyê li ba wan erzan e."

**Îraq ji destpêka şoreşa Sûriyê heta niha piştgiriya rejîma Sûriyê dike**

### 'Bila Malikî dersan nede me'

Berpirsên Îraqî çendîn caran gotine ku ew ne li dijî serhildana gelê Sûriyê ne, lê li dijî destêwerdana derveyî ne û bi taybetî jî desttêwerdana Tirkiyeyê û hêza NATOyê ku bi baweriya van mimkûn e bo şerekî herêmî deriyên navçeyê veke.

Serokê Kongreya Sûrî bo Guhartinan Dr. Amar Wl-Qurebî van daxuyaniyan retdike û dibêje, "Her kes dizane ku Malikî di hembêza Amerîka de hate ser desthilatê, îro jî behsa destêwerdana derekî dike û daxwaza çareseriyeke Sûriyê dike, bila Malikî dersan nede me em baş zanin ew fermanên xwe ji ku werdigire."

Endamê Encûmena Niştimaniya Sûriyê Zuhêr Salim bo Rûdawê got, "Em gellekî diêşin ku hikûmeteke li dijî dîktatorek şer kiriye niha piştgiriya dîktatorekî din dike, hikûmeteke ku êş û zordarî ji destê Baas dît, niha jî di rêza Baas de ye."

### "Gelê Îraqê ligel şoreşa gelê Sûriyê ye"

Derbarê bandora vê helwesta Hikûmeta Îraqê li ser pêwendiyên di navbera herdu welatan de piştî ruxandina Esed. Zuhêr Salim got, "Gelê Îraqê bi Ereb û Kurdên xwe wê bimîne cîranê me. Helwesta me wê li hember wan hêzên Îraqî be yên ku piştgiriya rejîma Esed dikin û helwesta xwe bi erzan firotine. Ev wê li himber helwesta xwe berpirsyar bin."

Salim tekez li ser peywendiyê xurt yên her du gelan kir û got, "Em baş dizanin ku gelê Îraqê bi hemû pêkhateyên xwe digel şoreşa gelê Sûriyê ye ku azadiya xwe werbigire."

Nûnerê Ciwanên Şoreşa Sûriyê di Encûmena Niştimanî ya Sûriyê de Hozan Îbrahîm jî got, "Ti bandora van helwestên Hikûmeta Îraqê li ser têkiliyan gelên Sûriyê û Îraqê nabe, gelê Sûriyê dizane ev ne helwesta gelê Îraqê ye, tenê helwesta Hikûmetê ye."

## Şirove



### Êdî dema "Bihara Navxweyî ya Kurdan" hatiye

**Ahmet DERE**

Ji destpêka 2011ê vir ve gotina "Bihara Ereban" ketiye nava wêjeya navneteweyî. Li gorî rastiya vê gotinê wê sîstemên kevneparêz hilweşin, di van welatan de sîstemên nûjen werin avakirin. Heya niha rastiya "Bihara Ereban" neketiye jiyanê, pêşeroja wê jî ne diyar e.

Rewşa "Bihara Ereban" û pêşeroja wê çi dibe bila bibe, ji bo me Kurdan pêwîstî bi "Bihareke Navxweyî" heye. Ji bo bingehek ji biharekê rast û pêvajoyekê azad re were amade kirin, divê li welatê me û di nava gelê me de "Bihareke Navxweyî" were jiyîn. Bê ku ev bihar bijî, ne mimkun e ku gelê me bikaribe ji pêvajoya bihareke rast re pêşengiyê bike.

Di dîroka Kurdistanê de û heya niha bingeha hemû derd û kulan bêtifaqî û dijminatiya navxweyî ye. Hêzên dagirker herdem pîlanên xwe li ser vê qelsiya gelê me dane çêkirin. Di encama siyasetên dagirkeran de nakokî di nava Kurdan de kûrtir bûne . Lewre, beriya ku li dijî hêzên dagirker "Bihareke Kurdan" bê jiyîn, divê em bikaribin di nava xwe de biharekê bijîn.

Dema ku em li 40 salên borî dinêrîn, baş tê dîtin ku bi dehan rêxistin di nava Kurdan de tenzîm bûne û bi armanca "Azadkirina Gelê Kurd" şer kirine. Ji heman rêxistinan çendê wan di nava demeke kurt de hatine pelçiqandin û ji holê winda bûne. Ji têkçûna van rêxistinan, mixabin, bi qasê dijmin hin tevgerên Kurdan jî kêfxweş bûne, destên xwe li hev dan. Mirov fedî dike ku heman nêzîkatiya Kurdan bîne ziman, binivîsîne.

Îro li Kurdistanê û li derveyî welat bi dehan rêxistin û tevgerên Kurdan hene. Ji derveyî hin rêxistinên li Başûrê Kurdistanê, mixabin di navbera pirraniya rêxistin û tevgerên Kurdan de diyalogeke li ser esasê parastina mafê azadiya gelê me tine. Giraniya sedemên nakokiyên heyî berjewendiyên rêxistinî ne, her rêxistin, tevger û komele dibêjin "bila hindik be lê ya min be". Bê guman bi vê mentalîteyê ne yekgirtin dikare çêbibe û ne jî hevkarî dikare bi pêş bikeve. Yên ku ji heman nêzîkatiyan sûd werdigirin dîsa hêzên dagirker in.

Di vê dema ku li pirr welatan têkoşînên azadiya gelan li pêş dikevin de, pêwîstiyeke pirr mezin bi "Bihareke Navxweyî ya Kurdan" heye. Piştî pêkhatina "Bihareke Navxweyî" êdî em dikarin behsa "Bihara Kurdan" bikin. Di vê derbarê de bar û kar tenê nakeve ser milên rêxistinan, divê hemû Kurd, bi taybetî jî rewşenbîr û zanyar xwe berpirsyar bibînin.

www.arsivakurd.org

# Leşkerekî kurd yê ji Artêşa Sûriyê reviyayî: Leşkerên kurd di nav artêşa sûrî de bi pîlan tên kuştin

» Rêjîmê ciwanên Elewî kirine leşker û çek û meaşên baş dide wan û wan fêrî kuştinê dike

Silêmanê Alîxan
Kawar Berwarî Zaxo

Diyar (21) nasnavê ciwanekî Kurdê Rojavayê Kurdistanê ye ku berî du salan çûbû nav rêzên artêşa sûrî bo bicihkirina erkê xwe yê leşkerî yê mecbûrî. Diyar di nav fermandariya hêzeke tank û zirîpoşan li Şama paytexta Sûriyê de bû, lê berî ku dema leşkeriya vî leşkerê kurd bi dawî bê, ew hate girtin. Piştre Diyar bi awayekî demkî hat berdan, heya civîna dadgehkirina dawî, ku biryar bû di 15.12.2011ê de bihata sazkirin. Lê Diyar li benda dadgehkirina xwe nema û ji Sûriyê reviya. Ew roja 27.11.2011ê gihîşte bajarê Zaxoyê li Başûrê Kurdistanê.

Diyar li Zaxoyê qala rewşa xwe û leşkerên kurd bi giştî di nav rêzên Artêşa Sûriyê de ji Rûdawê re kir. Diyar wiha dest pê dike: “Qedexe bû em Kurd bi hevre rûnin, bi kurdî biaxivin, an stranên kurdî bêjin, an ligel malbatên xwe bi kurdî biaxivin û ev tişt taybet ji bo Kurdan wiha bû.” Diyar amaje da wê yekê ku leşkerên kurd ji xwe bi tirs bûn, ji ber ku bi çavê karxiraban berê xwe didan wan, “dema dizanîn ku em Kurd in, kesî hevaltiya me nedikir, xwe ji me dûr dikirin û digotin hûn cudaxwaz in û dixwazin xaka me parçe bikin û dewletekê ava bikin.” Diyar herwiha diyar kir ku bi ser de jî mafê wergirtina îcazeyan jî, ku herdu heyvan mafê leşkeran heye bo 6 rojan serdana malbata xwe bikin, bi hêsanî nadin leşkerên kurd: “Efserên me dibêjin emê îcazeyê bidin we, lê dema hûn vegerin divê hûn kîloyeke şîranî yan rûnê erebî, yan hêkên herêmî, yan hingiv ji me re bînin.” Diyar got dema ew ji mal vedigeriya, wî pere jî ji xwe re dibirin, ji ber ku meaşê wî 515 lîre bûn û du pakêtên çixareyan pê dihatin. Wî herwiha got ku rewşa Kurdan gellek xirab bûye, bi taybetî piştî serhildana Qamişloyê û niha jî di van bûyeran de eger du leşker ligel hev rûnin, nîşangir hene yekser wan dikujin, “dibêjin ev pîlanekê girêdidin û wê parçe bikin.”

### Eger guhdariya fermanên leşkerî nekin…

Diyar qala serhatiyeke xwe li leşkeriyê jî dike û dibêje “otomobîla efserekî elewî di tasekê de asê bûbû, min hinek leşkerên nû ligel xwe birin û me got emê otomobîlê derxin derve, lê ew hat û xwe ji min aciz kir û got tu Kurdekî têkderî û we welatê me xirab kiriye û te otomobîla min jî asê kir û gef li min kirin ku ewê navê min bide efserê ewlekariyê.” Herwiha derbarê leşkerên kurd yên ku di yekîneyên xwe de tên kuştin, Diyar got ku ew bi qest û bi pîlanên efseran tên kuştin, “weke mînak berî du salan li devera Kiswê efserekî fîrqeya yekê hevalekî me yê ji Qamişloyê kuşt. Wî efserê ereb gote hevalê me hilkişe ser sitûna elektrîkê, eger ew vê yekê neke, ewê cezayê hejmar 20 (yanî zêdekirina dema leşkeriyê) li ser wî ferz bike. Lewma ew leşkerê kurd çû ser sitûnê û bi sedema kontakta elektrîkê mir.”

Diyar got ku rêjîm leşker û efserên ereb jî ceza dike, eger karekî dijî alîgirên malbata Esed bikin: “Carekê efserekî bi pileya general (eqîd rukin) li Deraa bi ser malekê de girt û hemû tiştên wê malê talan kirin. Piştre diyar bû ku xwediyê malê mirovê waliyê Deraa ye. Ew general li meydanê hat gulebarankirin. Em jî birin ji bo temaşekirina îdamê û gotin çarenivîsa we jî ev e, eger guhdariya fermanên leşkerî nekin.”

Diyar dibêje serbaz di jêr emir de ne û ditirsin û dixwazin dema leşkeriya xwe xilas bikin û vegerin mal. Eger guhdariya fermanan nekin, wê dema leşkeriya wan zêde dikin û wan digirin. Diyar dibêje xelk jî dizane ku leşker bi kêfa xwe êrîşî wan nakin, “piştî Cejna Remezanê ez hatim berdan û min li Kiswê kar dikir. Leşkeran bi 47 tankan û 500 leşkerên fîrqeya yekê êrîşî Kiswê kirin. Ji alîkî jî xelkên Kiswê xwarin didan leşkeran.” Lê Diyar amaje da wê yekê jî ku hinek leşker hene bi dil û can ligel rêjîmê ne, ew jî Elewî û Murşîdî ne û xelkên Banyas û Tertûs û Swêda jî hinekî wisa ne, “ev qazancker in ji rêjîmê”. Diyar herwiha got rêjîma Esed bo veminandina şoreşa Sûriyê ciwanên elewî yên jidayikbûyên salên 90an hemû anîne leşkeriyê û çekên baş dane wan û her heyv 50 hezar lîreyan jî (600 heya 1000 Dolar) werdigirin û wan fêrî kuştina xelkê dikin.



### 17 rojan çavgirtî ma

Diyar derbarê biryarên Esed bo azadkirina girtiyan got: “Bazirgan û bikarhênerên madeyên hişber, diz û cerdeçî, bazirganên çekan û hinek selefî û Îxwan bûn. Herwiha li şûna dadgeha ewlehiya dewletê jî dadgeheke xirabtir damezirand ku ew jî dadgeha ewlehiya leşkerî bû û her kesê li Sûriyê bê girtin di bin emirê vê dadgehê de ye.”

**Li hember navê wî jî nivîsîn “tawanbar e bi xiyaneta niştiman û lawazkirina hestên netewî.”**

**Ew general li meydanê hat gulebarankirin. Em jî birin ji bo temaşekirina îdamê û gotin çarenivîsa we jî ev e.**

Li gor raporteke saziya çavdêriya mafên mirovan ya ser bi Neteweyên Yekgirtî, ferman li leşkerên Sûriyê hatine kirin ku li xwenîşanderan biteqînin. Diyar jî vê yekê piştrast dike û ji Rûdawê re diyar kir ku fermandarên wan ferman li wan dikirin ku teqe li xwenîşanderan bikin û digotin ev xelk karxirab in û divê bên kuştin: “Em nêzîka 15 ciwanan bûn û ez tenê Kurd bûm. Me çekên xwe danîn û ev ferman bicih nekir.” Diyar got ku ew ji ber vê helwestê hatin girtin û di destpêkê de ew birin liqa Filistînê, piştre liqa Kefir Sûse û liqa Sweyda yên partiya Beesê: “Nêzîka 17 rojan dest û çavên me girtî bûn, min bi deh tiliyan pencemorên xwe li ser hinek kaxezan kirin, bêyî ku ez bizanim çi li ser wan nivîsandiye. Dûre em birin zindana Seydnaya ya leşkerî ku dikeve gundê Seydnaya yê çiyayê nêzîkî bajarê Eltel, li binê çiyayê mezin, bi dûriya 3 km li bakurê Şamê.”

### 5 hezar zindanî

Diyar berdewam kir: “Dema ez di zindanê de bûm, zêdeyî 5 hezar kes tê de hebûn û hemû jî ew bûn ku rapor li ser wan hatibûn nivîsandin û gotine ev qala mala Esed dikin, yan qala siyaset û xwenîşandanan dikin. Wê demê sê efserên kurd tê de hebûn ku navê yekî ji wan muqedem* Hesan bû û ji Efrînê bû. Ji ber redkirina emirên leşkerî hatibûn girtin, li bajarokê Duma ku dikeve derdora Şamê. Di zindanê de îşkencekirin hebû, bi elektrîk û dolaban. Xwarina me jî gellek xirab û pîs bû û tama benzîn û madeyên genî jê dihat, lewma dema ez derketim bi nexweşiya şekir ketim.”

Piştî zêdeyî 40 rojên zindankirinê, Diyar ji girtîgehê derket û nasnameya sûrî jê standin û bi awayekî demkî azad kirin, bi şertê ku li Kiswê bimîne, heya roja dadgehkirina dawî ku biryar bû di roja 15.12.2011ê de bihata sazkirin. Herwiha li hember navê wî jî nivîsîn “tawanbar e bi xiyaneta niştiman û lawazkirina hestên netewî.” Lê “piştî min pirsiyar ji hinek aliyên têkildar kir ka wê çarenivîsa min çi be û ceza wê çawa be, gotine min eger tu bê dadgehkirin, bi kêmanî wê bi 5 salên zindankirinê bê cezakirin û eger tomet li ser te selimandin, tuyê bi 15-20 salan bê zindankirin. Lewma ez reviyam.” Diyar ji sînorê navdewletî yê Sûriyê û Îraqê bi qaçaxî derbasî xaka Herêma Kurdistanê bû, “hevalekî me yê din jî bi kelûpelên xwe yên leşkerî ji Humisê reviyaye û bi qaçaxî li Rojavayê Kurdistanê maye û dixwaze bê vir lê kes tune alîkariya wî bike.” Herwiha du kurxalên Diyar jî di leşkeriyê de ne, yek li Humis û yek li Deraa ye û kes tiştekî ji wan nizane. Niha di bin çavdêriyê de ne û nahêlin ew telefona malbatê jî bikin û em nizanin ka ew sax in yan mirî ne.”

### 10 hezar Dolar dan

Li gor Diyar dibêje, wî nêzîka 10 hezar Dolar xerc kir, heya deftera xizmeta leşkeriyê çêkir û karî bi awayekî demkî ji dadgehê xilas bibe. Diyar ji malbateke 13 kesî ye ku li Rojavayê Kurdistanê dijîn û rewşa wan ya aborî gellekî xirab e. Bavê wî li derveyî welat kar dike û birayên wî jî hinek dixwînin û hinek jî karkeriyê dikin. Ew jî niha li Zaxoyê li cem pismamekî bavê xwe li taxa Bêdarê dijî û nikare ji Zaxoyê derkeve û kar jî bike: “Ez newêrim telefona destgirtiya xwe jî bikim û min telefona mal jî nekiriye, ji ber ku hemû telefonên sûrî di bin çavdêriyê de ne. Herwiha ez nikarim nasnameya xwe jî kifş bikim, ji ber ku zilamên rêjîmê wê herin ser malbata min li Sûriyê.”

Diyar bi hêvî ye ku Hikûmeta Kurdistanê mafê mabûnê bide wî, dakû bikaribe li vir bijî û karekî bike ku jiyana xwe pê birêve bibe: “Jixwe eger nedin jî, dîsa mala wan ava be.”

*pileyek bilind ya efseriyê ye

www.arsivakurd.org



## Leyla Zana ji bo “50 saliya Kurdan li Munchenê” bû:

# An Tirkiye xwe diguherine an jî wê bê guherandin!

Reşad Ozkan Munchen

Leyla Zana li bajarê Munchenê li pêşberî 400 beşdarvan axivî û bang li dewleta Tirk kir û got: “Ya tu xwe diguherinî yan jî tu wê bê guherandin.” Zana dixwaze pirsgirêka kurd bi rêya referendûmê bê çareserkirin û ji bo wê jî piştevaniya raya giştî ya navnetewî xwest.

Di çarçoveya çalakiyên “50 Saliya Koçberiya Kurdan Bo Munchenê/50 Jahre KurdInnen in München” siyasetmedar û parlamentera kurd Leyla Zana (BDP), Kevnserokê Komela Mafên Mirovan (IHD) Yusuf Alataş û parlamenterê suryanî Erol Dora (BDP) roja îniya borî hatin Munchenê. Di salona şaredariya bajêr Alter Rathaussallê de 3 panel hatin lidarxistin û axaftina pêşî şaredarê seyêmîn yê ji Partiya Keskan Hep Monatzeder kir û got,“Bajarê Munchenê ji Kurdan re spas dike. Di avabûna bajêr de keda Kurdan jî pir derbasbûye.”

Leyla Zana tevlî çalakiya “50 Salî Kurd li Munchenê” bû

Wêne: Rûdaw

### Dora, hevkariya Kurd û Suryaniyan dixwaze

Mijara panela yekemîn “Rewşa Suryanyan li Tirkiyeyê” bû. Parlamenterê BDP yê Suryanî Erol Dora û Prz. Yusuf Alataş beşdarbûn û nivîskar Haydar Işik jî moderatoriyê kir. Di civînê de nezikî 100 Suryanî jî beşdarbûn. Dora di axaftina xwe de got, “Îro rewşa Suryaniyan ji salên berê pirr baştir e. Berî 10, 20 salan me ji tirsê nekarî serê xwe ji pencereyên xwe derxista. Devleta Tirk û oldarên paşverû bo me astengî derdixistin. Bi hezaran Suryanî welatên xwe terikandin û li dinyayê belavbûn. Em dixwazin biratî û dostaniya Kurd û Suryaniyan xurtir bibe.” Parêzer Alataş jî li ser peymanên huqûqî û yên siyasî axivî û got, “Divê hurmeta Tirkiyeyê ji beyannamêyên nawnetewî hebe, lê belê li gor berjewendiyên xwe hereket dike, ev jî li dijî hemû rêzên huquqa navnatewî ye.”

### “Gellek welatên Ewropayê nasnameya kurd nasnakin”

Mijara panela duyemîn jî “Naskirina Nasnameya Kurd, Rewşa Kurdan ya Yasayî û Fêrbûna Zimanê Kurdî di Dibistanên Almanyayê de” bûn. Axaftvanên vê civînê endamên meclîsa şaredariya Munchenê Gulseren Demirel (Partiya Kesk), Orhan Akman (Partiya Çep) herdu bi eslên xwe kurd in, Prz. Hubert Heinhold û Nivîskar Haydar Işik bûn. Moderasyona vê panelê jî Margereta Sphon kir. Prz. Heinhold bo Rûdawê daxuyand ku li Almanyayê û li welatên din yên Ewropa kurd pirr rastî neheqiyan tên û wiha dom kir: “Yasayên li dijî terorê li hemberê wan tê bikaranîn. Nasnameya wan nayê qebûlkirin. Bi fermî nasnameya kurd nayê naskirin û wek Tirk, Ereb û Faris tên hesibandin.”

Endamên meclîsa şaredariya Munchenê Demirel û Akman jî bo qebûlkirina nasnameya kurdan ramanên xwe anîn ziman. Nivîskar Işik jî li ser fêrbûna kurdî di dibistanên Almanyayê de axivî û got, “Bo pêşveçûna tendurustî ya zanyariya zarokên kurd fêrbûna kurdî pirr girîng e.”

### Leyla Zana Munchenê dihejîne

Parlamentera kurd Zana û Prz.Yusuf Alataş di panela seyêmîn de li podyûmê cih girtin. Moderasyona vê panelê serokê fraksiyona Partiya Keskan ya Meclisa Şarederiya Munchenê Siegfried Benker kir. Benker di serî de got: “Birêz Zana em pir kêfxweş in ku hûn îro li bajarê me ne.

> **Benker: Birêz Zana em pirr kêfxweş in ku hûn îro li bajarê me ne**

Wexta mirov bêje ‘ez Kurd im’, ev gotin dibe vegotineke siyasî. Lê dema kesek bêje ‘ez Alman im’, an jî ‘ez Tirk im’ ev bêje tiştekî ifade nakin. Jiber ku bi hezeran Kurd dibêjin ‘ez Kurd im’ dewleta Tirkiyeyê wan dixe zîndanan. Zana jî got ‘ez Kurd im’ wê 10 sal xistin zîndanê.”

### “Ti dewletek nasnameya kurd qebûl nake“

Dema ku Benker dawî li axaftina xwe anî beşdarvan û jinên kurd ku ji bo Leyla Zana hatibûn civînê bi çepikan û tililiyan salona li navenda bajarê Munchenê hejandin. Zana dest bi axaftinê kir û got: “Salan porê me spî kiriye, hîn jî em li ser axa xwe penaber in, jiyana me penaberî ye. Di hemû perçeyên Kurdistanê de neheqî û bindestî dom dike. Me çawa di salên 1938ê de berjewendiyên xwe parast îro jî divê em biparêzin, dive em milên xwe bidin hev û divê yekitiya xwe avabikin. Divê Kurd dîrok, ziman, kultur û dahatuya xwe biparêzin û ji hemû perçeyan bo kultur û zimanê xwe xizmetê bikin. Ev tiştên ez dibêjim divê bo hemû Kurdan wecîz û armanc bin.”

Zana got li derveyî welat jî ti dewletek nasnameya gelê kurd rasterast qebûl nake û wiha dom kir: “Di cîhanê de ti devlet û miletek alîkariya Kurdan nake, bêdeng in. Me wekî Tirkan, Ereban û Farisan dibînin. Em Kurd in û em ê her Kurd bimînin. Em jî dixwazin wek neteweyên din bijîn.”

### Zana referandûmê dixwaze

Zana got azadî, otonomî, federalî, serxwebûn hemû heqên Kurdan ne û wiha dom kir: “Kurd divê bo referendûmekê herin ser sindoqan û bo dahatuya xwe dengan bidin. Ji sindoqan çi derdikeve bila derkeve; otonomî be, konfederalizm be, federasyon be, serxwebûn be, çi jê derkeve em qebûl dikin.”

Zana di dawiya axaftina xwe de da zanîn ku demek wisa hatiye ku ya Tirkiye xwe diguherîne yan jî wê bê guherandin. “Eger devlet xwe neguherîne, wê civak, tekoşîna gelan ew biguherînin. Derket hoê ku AKP û Erdogan Kurdan dixapînin. AKP projeya darbeya 12ê îlonê ye. TRT 6 jî projeya hikûmeta Ecevit bû, ne a AKPê ye.”

### Di şeva çandî de 600 kes

Çalakiyên di çarçoveya “50 Saliya Koçberiya Kurdan Bo Munchenê/50 Jahre KurdInnen in München” bi alîkariya şaredariya Munchenê, ji aliyê Komela Çandî ya Mezopotamya (MKV) hate organîzekirin. Çalakiyê roja 15ê Kanûnê destpekir û roja 18ê Kanûnê di salona Reiterhalle de bi şevek çandî dawî bû. Panel di salona şaredariya bajêr de di saet 14:00 de destpêkirin û heta saet 21:00 an domkirin. Di şeva çandî de jî nezikî 600 kes beşdarbûn. Leyla Zana li vir jî axivî û paşê kultur û muzîka kurdî hate pêşkêşkirin.

### Serda bo partiyên siyasî û şaredariya Munchenê

Zana, Alataş û Dora di çarçoveya hatina Munchenê de serdana Serokê Şaredarê Mezin ya Bajarê Munchenê Christian Ude (SPD) û ya endamên Meclîsa Fraksiyona Partiya Keskan kirin. Parlamenterên BDPê Zana û Dora û parêzer Alataş herwiha ziyareta parlamena Bavyerayê jî kirin û bi parlamentera Fraksiyona SPDê ya Meclîsê Natasha Kohnen û Serokê Fraksiyona Partiya Keskan Margarete Bause re axivîn.

### Leyla zana serdana kurdên başûr dike

Leyla Zana serdana Kurdên ji Başûrê Kurdistanê jî kirin. Zana roja pênşema borî hate Munchenê û roja şemiyê di restauranta Terdûştan de serdana Kurdên başûr kir. Di nav beşdarvanan de şanovan, siyasetmedar, rêvebirên komeleyan û rewşenbîrên kurd jî hebûn. Zana di axaftina xwe de got, “Kurdên ji hemû perçeyan yên li Munchenê dijîn divê piştevaniya hev bikin, xizmeta dîrok û zimanê xwe bikin û kurdîtiya xwe ji bîr nekin. Divê berjewendiyên Kurdistanê ji berjewendiyên grûb û partiyan girîngtir be.”

# Laşfiroşek behsa hestên mişteriyên xwe yên Kurd dike


Wêne: Rûdaw

» “Zilamekî Rûs bû. Dema min cara yekê bi daxwaza dayîka xwe ligel wî zilamî bo pere seks kir, ez 16 salî bûm. Zilamekî dewlemend bû û gellek pere dabûn dayîka min.”

**Azad Dicle** Essen

Tatyana di 16 saliya xwe de dest bi laşfiroşiyê kiriyê. Çîroka Tatyana ji ya gellek jinên din ku dest bi laşfiroşiyê dikin, cuda ye. Ew ne ji aliyê zilamekî ve hatiye tirsandin û xapandin û ne jî bi tena serê xwe maye û ji neçariyê dest bi vî karî kiriye. Wek ew dibêje, dayîka wê ew xistiye navvî karî. Tatyana niha li bajarê Essenê li Almanyayê li ser daxwazên mişteriyan diçe mal û otêlan: “Du telefonên min hene û dayîka min bersiva telefonan dide û randevûyan bi mişteriyan re diyar dike.”

Beriya ku ew bi me re axaftinê qebûl bike, bihayê dema xwe dibêje. “Wext bo min pere ye!” Em dipirsin ka ew çi dixwaze. “Bo nîv saetek axaftin 50 Euro!” Em fêr dibin ku ev bo wê bihayê standard e, lê ew lê zêde dike: “Hinek mişteriyên min hene bo demên dirêj zêde pere didin min, diyariyan didin min û hinek jî min bo cihê dûr bi xwe re digerînin.” Piştî ku ew 30 Euro ji destê me digire û dixe bêrîka xwe, cigarekî û qedehek vodka dixwaze. Û destpê dike...

## Dayîka wê jê re mişteriyan dibîne

Kurteçîroka jiyana Tatyana K. nimûneyek balkêş e di sektora laşfiroşiyê de. Wek ew bi almaniya xwe ya xirab ji me re vedibêje, ew niha çi dike dayîka wê jê agahdar e, ango "dayîka min mişteriyan bo min dibîne û pereyên ku ez tînim, didim wê." Dema ku diaxive, dest û milên xwe jî tevdigerîne... Bala me dikşîne ku di qevda destê wê de birînên kevin hene. An jilêt li xwe dane, an jî derziyên hişbirinê.

> **Piştî du sê caran ku em hevdu dibînin, bi çavê jina xwe li min dinêrin, hinek tiştan li min qedexe dikin, carinan jî weke ku bixwazin ez dev ji vî karî berdim, şîretan li min dikin.**

Tatyana ev 3-4 sal in ku li bajarê Essenê ligel dayîka xwe ya 39 salî dijî. Ew niha 20 salî ye û zêdeyî 4 sal in ku li malan û otêlan laşfiroşiyê dike. Ew di sala 1991ê de ji dayîkek estonî û bavekî tirk li bajarê Mannheimê hatiye dinyayê. Lê ji ber ku dayîka wê laşfiroşî dikir, Tatyana dema ku 7 mehî bû ji aliyê Saziya Ciwanan ve ji dayîka wê tê standin û bo malbatek alman ya bê zarok tê dayîn. Sê sal şûn de dayîka wê zaroka xwe ji malbata alman werdigire û dibe welatê xwe Estonyayê. Weke ku Tatyana dibêje, "Ez fêrî almanî bûbûm û min ew malbat weke dê û bavê xwe dizanî."

## 16 salî bû…

Dayîka wê 13 sal bi keçika xe re mijûl dibe û di sala 2007ê de careke din vedigere Almanyayê. Tatyana êdî keçikek 16 salî ye û ligel zimanê dayîka xwe estonî, hinekî jî almanî dizane. Ew di vegera Almanyayê de careke din rastî surprîzeke din tê: “Ez 4 salî bûm, dema min dayîka xwe nas kir, lê min di 16 saliya xwe de jî fahm kir ku bavê min zilamekî tirk e.”

Dayîka wê dîsa laşfiroşiyê dike û Tatyana dixwaze bavê xwe nas bike, "Min nedixwest ligel dayîka xwe bimînim, lewma çûm cem bavê xwe." Lê bavê wê, bavê ku dema ew 3 mehî bû tenê careke ew dîtibû, bi hestên bavîtiyê lê xwedî dernakeve. Ew bi qumarê dileyîze û sond dixwe ku eger ew dayîka Tatyana bibîne ew ê wê bikuje. Tatyana neçar dimîne ku careke din vegere cem dayîka xwe. Mirovên cûrbecûr tên û diçin mala dayîka wê. Şevekê dayîka Tatyana wê dixemilîne û wê li otomobîleke lûks, li kêleka zilamekî siwar dike. Wê şevê Tatyana dest bi “kar” dike. Tatyana tîne bîra xwe: “Zilamekî Rûs bû. Dema min cara yekê bi daxwaza dayîka xwe ligel wî zilamî bo pere seks kir, ez 16 salî bûm. Zilamekî dewlemend bû û gellek pere dabûn dayîka min.”

## Xortê kurd dixwaze wê xilas bike…

Tatyana roj bi roj di karê laşfiroşiyê de dibe xwediyê ezmûn, dayîka wê jê re behsa taybetmendiyên zilaman dike û wê fêrî kar dike. Piştî salekê Tatyana xortekî kurd nas dike. “Wî ji min hez dikir, digot tu çiqas pere dixwazî ez bidim te, lê dev ji vî karî berde, were bi min re bizewice.” Tatyana vê pêşniyarê pêşkêşî dayîka xwe dike, lê dayîka wê qebûl nake û nahêle careke din Tatyana here cem wî xortê kurd. “Ez reviyam, çûm mala wî xortî û ligel wî 6 mehan mam“, Tatyana dibeje. Tatyana dîsa vedigere cem dayîka xwe, karê laşfiroşiyê dom dike. Dema em sedemê vê vegerê dipirsin, ew bi dengekî bilind û bi hêrs bersiva me dide. ”Sedem ew bû ku wî dixwast ez 24 saetan li gor çarçoveya ku wî daye pêşiya min bijîm. Ji ber ku pirr zêde ji min hez dikir û nedixwast ez bi cihekî ve herim, car caran li min dixist, tundî dikir.”

## “Ez êdî ji mişteriyên xwe yên kurd ditirsim”

Tatyana di 4 salên laşfiroşiyê de ji gellek nijadan û netewan zilam naskirine. Gellek mişteriyên wê yên kurd hene û çendîn peyvên kurdî jî fêr bûye. Lê derbarê nasnameya mişteriyan de ti gotinekê nabêje: “Prensîba karê min e, derbarê mişteriyan de ti tiştî nabêjim!”

Ew pirr bi zilamên kurd re razaye û bi gellek Kurdan re hevaltiya demkurt kiriye. Ew derbarê zilamên kurd de dibêje, "Ti caran pereyê min kêm nedane min. Ligel pere carinan diyarî jî didin min, lê piştî du sê caran ku em hevdu dibînin, bi çavê jina xwe li min dinêrin, hinek tiştan li min qedexe dikin, carinan jî weke ku bixwazin ez dev ji vî karî berdim, şîretan li min dikin." Lê Tatyana di dawiya axaftina xwe de behsa du keçên kurd dike, du bûyerên teze tîne ziman. Ew behsa Arzu Ozmena ku ev çend hefteyan winda ye û wê keça 13 salî ya ku ji aliyê bavê xwe hat kuştin dike û dibêje, “Ez di demên dawî de ji mişteriyên xwe yên kurd ditirsim, ji ber ku hinek bav keçên xwe, hinek bira jî xuşkên xwe dikujin, çima kesek ji wan min jî nekuje?"

Reklam
Bi me cihêwaz bibin.
Ji bo reklam, dîzayn û çapkirinê em di xizmeta we de ne.
Reklama televîzyon û rojnameyan, flayer, afîş, name, eşyayên xelatan, kovar, pirtûk, malperên înternetê, dawetname…htd.
Bi kurtasî ji bo her pêwîstiyek we di aliyê reklam û çapkirinê de…
Hûn jî xwe bighînin me…
Hûn jî cihêwaziyê hîs bikin!
graf-adolf-str. 70a
40210 düsseldorf
tel.: 0211 - 17957982
fax: 0211 - 17957983
www.dassign.de
info@dassign.de
DAS | SIGN®
werbeagentur & verlag gmbh
mobil : 0173 - 270 67 81

Parêzer Uzun
Buroya Parêzeriyê
Em li seranserê Almanyayê di xizmeta we de ne
Parêzer Oktay Uzun
Reklam
Beşên me yên kar
Dadweriya Kar (Arbeitsrecht)
Dadweriya Aborî (Wirtschaftrecht)
Dadweriya Trafîkê (Verkehrsrecht)
Dadweriya Werzîşê (Sportrecht)
Dadweriya Peymanê (Vertragsrecht)
Dadweriya berpirsiyariya pizîşkî (Arzthaftungsrecht)
Navnîşan:
Sonnemannstr. 3
60314 Frankfurt am Main
Tel.: 069 – 49 600 87
Fax: 069 – 49 600 88
email: info@kanzlei-uzun.de
web: www.kanzlei-uzun.de

www.arsivakurd.org

# Bayern bû “nîv şampiyon”



Li Almanyayê sezona futbolê hefta borî bo meheke dest bi bêhnvedanê kir. FC Bayern Munchen bû şampiyonê payîzê û şampiyonê sala borî Borussia Dortmund bû 2.

Sezona 2011/2012 ya futbolê ya ligên Almanyayê hefta borî nivê yekê xilas kir û bo meheke kete bêhnvedanê. Sezona lîga yekê 1. Bundesliga li Almanyayê di 5ê Tebaxê de bi maça Borussia Dortmund û Hamburgê dest pê kiribû û êvara 18ê Kanûnê bi maça Borussia Monchengladbach û 1. FSV Mainz 05ê bi dawî bû. Li gor encaman tîma navdar Bayern Munchen tevî 34 pûanan bû şampiyonê payîzê û sê tîmên Nordrhein-Westfallenê, Borussia Dortmund, Schalke û Borussia Monchengladbach li dû hev hatin.

Di maçên roja dawî ya nîvê sezonê de, ango maçên 17.de encamên balkêş derketin holê. Bayer Leverkusen a ku di Lîga Şampiyonan de bi serkeftî serkêşiya grûba xwe dikir, roja 17ê Kanûnê di saheya xwe de ligel Nurnbergê 0-3 têkçû. Encamek balkêş ya din jî li Schalkê rû da û Schalke 04 ligel Werder Bremenê 5-0 bi ser ket. Bayern jî di saheya xwe de ligel dijberê xwe yê Kolnê, ku heta niha gellek caran Bayernê têkbiribû, leyîst û 3-0 bi ser ket.

| | Tîm | M | S | W | T | G | P | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1. | Bayern | 17 | 12 | 1 | 4 | 43:10 | 37 | S S S N N |
| 2. | Dortmund | 17 | 10 | 4 | 3 | 35:12 | 34 | S U U S S |
| 3. | Schalke | 17 | 11 | 1 | 5 | 38:22 | 34 | S S S N S |
| 4. | Moenchengladbach | 17 | 10 | 3 | 4 | 25:11 | 33 | S N U S S |
| 5. | Bremen | 17 | 9 | 2 | 6 | 30:31 | 29 | N S N S N |
| 6. | Leverkusen | 17 | 7 | 5 | 5 | 22:22 | 26 | N U S U S |
| 7. | Hannover | 17 | 5 | 8 | 4 | 20:24 | 23 | U U U U N |
| 8. | Stuttgart | 17 | 6 | 4 | 7 | 23:20 | 22 | N N U N S |
| 9. | Hoffenheim | 17 | 6 | 4 | 7 | 19:19 | 22 | U S N U N |
| 10. | Köln | 17 | 6 | 3 | 8 | 27:35 | 21 | N U S U N |
| 11. | Hertha | 17 | 4 | 8 | 5 | 24:26 | 20 | U N U U U |
| 12. | Wolfsburg | 17 | 6 | 2 | 9 | 23:34 | 20 | S N U N S |
| 13. | Hamburg | 17 | 4 | 7 | 6 | 21:27 | 19 | U U S U S |
| 14. | Mainz | 17 | 4 | 6 | 7 | 22:29 | 18 | N U U U S |
| 15. | Nürnberg | 17 | 5 | 3 | 9 | 17:28 | 18 | S N N S N |
| 16. | Kaiserslautern | 17 | 3 | 7 | 7 | 13:21 | 16 | U U U N N |
| 17. | Augsburg | 17 | 3 | 6 | 8 | 15:28 | 15 | U S N S N |
| 18. | Freiburg | 17 | 3 | 4 | 10 | 21:39 | 13 | N N U U U |

M: Maç, S: Serkeftin, W: Wekhev, T: Têkçûn, G: Gol, P: Pûan

# Li Amed û Sêrtê 3500 taekwandovan hene

» Rayedarên dewletê çav bera potansiyela ciwanên kurd dan û tenê li Amed û Sêrtê bi hezaran ciwanên taekwandovan tomar kirin



Wêne: DIHA

Serokê Federasyona Taekwandoyê yê Tirkiyeyê Metin Şahin ragehand wan li Amedê û Sêrtê 3 hezar û 500 ciwanên ku dikarin taekwando bileyîzin, diyar kirine û got “Em niha ligel Konsolê Koreya Başûr hevkariyê dikin û armanca me ew e ku em hejmara sporvanên xwediyê lîsanê zêde bikin.”

Li gor nûçeya malpera Diyarbakir Sozê taekwando yekem spor e ku di qada navnetewî de gellek madalyayan tîne Tirkiyeyê. Lewma Federasyona Taekwandoyê yê Tirkiyeyê hewl dide ku hejmara sporvanên taekwandoyê yên xwediyê lîsansê zêde bike û bi vê armancê jî berê xwe daye bajarên Kurdistanê. Serokê Federasyona Taekwandoyê yê Tirkiyeyê Metin Şahin daxuyand ku di nava du salan de wan li Amedê Sêrtê zêdeyê 3 hezar û 500 taekwandovan tomar kirine û bi hejmareke zêde mamosteyan re jî peyman îmze kirine. Şahin got, “Em ligel Konsolê Koreya Başûr ev du sal in hevkarî dikin û dixwazin tenê li Amedê hejmara taekwandovanan bikin wek 5 hezar.“



Metin Şahin serdana Osman Baydemir kir û diyariyek dayê

# Li Mexmûrê turnovaya futbolê dest pê kir

**Mexmûr (Rûdaw) -** Li wargeha penaberan a Mexmûrê ji bo bîranîna şehîdên meha Kanûnê turnovayên futbolê hat destpêkirin. Turnovaya futbolê 16 Kanûnê dest pê kir û heya serê sala 2012yê wê berdewam bike. Turnovaya futbolê bi 24 tîman dest pê kir û roja 16ê Kanûnê 6 tîm derketin sehê. Tîmê Ş. Lezgîn û Tîma Ş. Simko hatin beramberî hev. Tîma Ş. Lezgîn 5 û 1 taxima Ş. Simko binxist. Dîsa tîma Ş. Viyan û tîma Ş. Bêrîtan hatin beramberî hev û Tîma Ş. Bêrîtan 8 û 6 li ser ket. Tîma Ş. Kamûran û Ş. Aslan jî hatin beramberî hev û tîma Ş. Kamûran 8 û 0 ser ket.

Komîteya turnûvayê wê tîmên ku di 24 Kanûnê de bên beramberî hev 2 rojên berê diyar bike. Hat diyarkirin ku ev turnûva heya serê salê wê berdewam bike. Di encama lîstika yekemîn de Tîma Ş. Kamûran rêza yekem de cih digire. Piştî ku 24 tîm bên hemberî hev, wê li gorî puanan têkevin rêzê û serkeftina wan wê li gorî puanan bê diyarkirin.



Wêne: DIHA

www.arsivakurd.org

## Darvekirina Ferzad Kemanger li Zaxoyê tê nîşandan

*__Zaxo (Rûdaw) -__ Lîstika şanoyê ya "avabûna stêrkan mizgîna hilatina rojê ye" roja 19ê vê mehê ji aliyê grûpa Mîtra li salona Rêvebiriya Rewşenbîriya Zaxoyê hat pêşkêşkirin. Derhêner û nivîskarê vê lîstikê, Kawar Kerem bo Rûdawê got "ev lîstika şanoyê behsa zîndankirin û darvekirina çalakvanê Kurd Ferzad Kemanger li Îranê dike." Kawar Kerem herwiha diyar kir ku ev şanogerî berhemê Rêvebiriya Giştî û Huneriya Duhokê û Tîpa Mîtra ye. Ev şano herwiha karê yekemîn yê vê grûpê ye.*



# Yilmaz Guney li Batmanê bû!

**»** Di mîhricanê de gellek nivîskar û derhênerên ciwan xelat wergirtin



Wêne: DIHA

**Êlih (Rûdaw) -** 2. Mîhrîcana Fîlmên Kurd ya Yilmaz Guney ku li Batmanê hate lidarxistin bi dawî bûn. Xelata belgefîlma herî baş dan 'Halabja- Helepçe' û di kategoriya kurtefîlmê kurdî de jî xelata fîlmê herî baş dan fîlmê "Pera Berhangê."

2. Mîhrîcana Fîlmên Kurd ya Yilmaz Guney ku ji aliyê Şaredariya Batmanê ve hate lidarxistin, bi merasîmeke de bi dawî bû.Wekîlê şaredariya Batmanê Serhat Temel, cihgirên şaredariyê, wekîlê serokê BDPê Batmanê Selîm Aratemur, derhêner Kazim Oz, hunermendên sînemayê û gelek kes tevlî merasîmê bûn. Di kategoriya belgefîlm, kurtefîlmên kurdî, çîroka kurtefîlmên kurdî de gelek fîlm hatin nîşandan û di nava van fîlman de yên herî baş bi merasîmekê li Salona Sînemayê ya Yilmaz Guney ya Şaredariya Batmanê hatin xelatkirin.

Xelata belgefîlmê herî baş derhênerên fîlmê "Halabja- Helepçe" Arkam Hîdou, di kategotiya belgefîlmê kurt yê kurdî de jî derhênerê fîlmê 'Pera Berhange' Arîn Înan Aslan û di kategoriya çîroka kurtefîlmê kurdî de jî derhênerê fîlmê 'Kapsul' Yakup Tekîntagaç xelatên xwe wergirtin. Îsal di kategotiya belgefîlm de xelata temaşevanan jî derhênerê fîlmê 'Evdalê Zeynikê' Bulent Gunduz wergirtin. Herwiha di kategotiya kurte fîlmê kurdî de jî xelata temaşevanan derhênerê fîlmê 'Alî Ata Bak' Orhan Înce wergirt.

## Mijden: Ez ne xwe û ne hunera xwe difiroşim

**Rêkewt Selam**

Stranbêj Mijden, ya ku li Holandayê dijî, piştî klîba 'Padaşt' ku tê de bi şêweyekî nîv tazî derdikeve, pirr rexne li wê hatin kirin, lê ew dibêje "ez biserketim". Ew di heman demê de dibêje warê xebata hunermendên jin gellekî hestiyar e, lewma eger ew zana nebe wê "sivik bibe".

Stranbêj Mijden li aliyekî karê xwe yê hunerî didomîne û ji aliyekî ve li Zanîngeha Amsterdamê di warê bînê (parfum) de dixwîne. Mijden hunerê wek behrê binav dike û dibêje, "Behr berî her tiştî xweşiyê dide dilê xwediyê xwe, dema xebatekê pêktîne." Mijden dide zanîn ku klîba wê ya dawî ji aliyê gellek kesan weke karekî dûrî kultura kurdî hatiye dîtin, hin kesan jî ev weke tiştekî nû dîtin û wiha dom dike: "Wan herduyan heta radeyê ez baxtewer kirim, ji ber ku di civaka Rojhilatî de eger karê mirov taqlîdî be. her kes destxweşiyê dike, loma rexneyan jî ez nîgeran nekirime."

Mijden karê xwe serkeftî dibîne û ji bo serkeftinên demdirêj dibêje, "bo hunermendan ti serketin berdewam nabin. Mirov divê hertim di xebatê de be û karên mirov ji yên berê baştir bin. Ev xebata ku min encam da dikeve dîrokê, ango serketin hat nivîsîn û qediya."

Ew bibîr dixe ku du caran bo Kurdistanê hatiye vexwendin lê ew neçûye û sedemê neçûnê wiha vedibêje: "Dema min behsa xerciyan dikir, digotin em ê civînê bikin û êdî deng ji wan nehat. Ya rastî, xwediyê kar behsa hezkirinê kir û min redkir, ji ber ku hesta min li hember wî nebû. Mîna ku dixwaze min bikire, ji xwe ez jî ne xwe û ne hunera xwe nafiroşim. Ev navê min û welatê min e û nafiroşim kesekî necamêr."



Reklam

ZEN-TAX
Steuerberatungsgesellschaft mbH

**Tel.:** 0221 – 16 83 17 42
**Fax:** 0221 – 16 83 17 43
**e-Mail:** info@zen-tax.de
**web:** www.zen-tax.de

**Navnîşan:**
Hohenstaufenring 55
50674 Köln

Mihesebeya Malî | Finanzbuchhaltung
Mihesebeya Heqdestê Karkeran | Lohnbuchhaltung
Hesabê Salê | Jahresabschlüsse
Beyanên Bacê | Steuererklärungen
Şêwirmendiya Avakirina Kargehan | Existenzgründerberatung
Karên Din | Sonstige Leistungen

www

**www.
rudaw.eu**
Her roj, 24 saetan mijar û hejmarên berê yên Çapa Ewrûpa ya Rûdawê bixwîne.

**Bitikîn!**

www.marsakurd.org




# Di “Battlefield 3“ de Kurd rola terorîstan dilîzin

» Yekemcar di lîstikek komputerê ya ewqas naskirî de rolek ji bo Kurdan hatiye diyarkirin. Ciwanên kurd derbarê vê role de çi difikirin?

**Stockholm (Rûdaw) -** Ji çar aliyan rexne li lîstika komputerê ya pirrfiroş “Battlefield 3” tên kirin lê ciwanên kurd pê dilxweş in, herçendî ku di lîstikê de Kurd rola terorîstan dilîzin.

Lîstika komputerê “Battlefield 3” ku tê wateya ”qada şerê” û berdewama Battlefield 2 ye, ji aliyê amerîkî û swêdiyan ve hatiye amade kirin û sala 2011ê li Swêdê bû lîstika salê. Belkî cara yekê be ku di lîstikek wiha hezkirî de rolek ji bo Kurdan jî hatibe veqetandin, lê Kurd rolek bi guman dilîzin, ew jî rola terorîstan e.

Di lîstikê de leşkerên amerîkî (U.S. Marine) derdikevin nêçîra terorîstan û li Parîsê, Tehranê û New Yorkê şerê terorîstan dikin. Battlefield 3 di 27.10.2011de ji bo PC ket bazarê û di tenê yek heftêyê de 5 milyon jê hatin firotin. Jixwe çavên gellek lîstikvanan li vê lîstikê bû û niha li bendê ne ku wek diyariya Noelê bikeve destê wan. Yek ji taybetiyên vê lîstikê ew e ku mirov tenê jî dikare bilîze, bi hevalên xwe re, an jî bi gellek kesên din re bi rêya înternetê.

Çîroka lîstikê bi kurtasî wiha ye: Çawîşekî amerîkî ji bo erkekî diçe Kurdistana Başûr. Li Silêmaniyê serê wî bi komek terorîst re dikeve belayê. Piştre diçe Tehranê ku dijminan rawestîne, da ku bombeyên atomî navêjine Parîsê û New Yorkê û şerên wan li ser vê yekê dom dike, heta ku çawîş pêşiya felaketeke mezin digire.

“Battlefield 3” gellek deng veda lê belê gellek rexne jî hene. Li gor ajansa nûçeyan a fransî AFP, li Îranê ev lîstik hatiye qedexe kirin û polîsan bi ser dikanên CDyan de girtine û dest danîne ser hemû CDyên vê lîstikê. Lê gelo Kurd çawa li vê lîstikê û mohrkirina Kurdan wek terorîst dinerin?

Me ji çend xortên kurd ku bi lîstikê dilîzin, pirs kir ka ew çawa li vê morkirina Kurdan dinerin. Yasîn Akan xortekî 23 sali ye. Ew wiha dibeje: ”Bi raya min ev bi zelalî propagandayeke amerîkî ye û di çavên wan de Rojhilata Navîn warê terorê ye. Lê bi min, herçend grûbek Kurd wek terorîst nîşan dabin jî, min zimanê kurdî ewqas nebihîst, lewra xweşiya min neçû ewqas. Yasîn guhê xwe ji kurdiyê re tûj kiriye lê dîsa jî ”serokê terorîstan bi xwe bi erebî diaxive û yên din jî farisî diaxivin, gellek caran. Lîstik bi xwe wek hemû lîstikên amerîkî propagandaya wan e: Amerîkî yên baş in (good guys) û kesên ji Rojhilata Navîn terorîst in.” Hinek xort vê grûba terorîstan dişibînin gerîllayên PJAKê, lê li gor Yasîn Akan ev tenê spekûlasyon in.

Ciwanekî din yê kurd ku lîstikê nas dike, Botan Ala ye. Botanê 20 salî dibêje ku ev lîstik tenê fantazî ye, di fantaziyê de jî hertişt azad e: ”Ew nabêjin Kurd hemû terorîst in, tenê grûbek ji wan. Bi lîstikekê em nabine terorîst. Lê ku navê Kurdistanê ketiye nav lîstikek wiha mezin, kolanên Silêmaniyê didin nîşan, behsa Kurdan dikin, ev tenê xweş e.”

# Konferansa Şerefnameyê: Lêkolîn bi gavên 20 xulekî

**Armanc Egîd** Berlîn

Bi beşdariya 38 profesor, doktor, rewşenbîr, mamoste, dîrokzan û vekoleran, 16ê vê mehê li paytexta Almanya Berlînê konferansek li ser pirtûka dîrokî “Şerefnameya“ Şerefxan Bedlîsî hat lidarxistin. Konferansa di jêr navê “Şerefname: Nasname û jêderê dîroka gelê Kurd“ ji aliyê “Navenda Havîbûn ya Lêkolîn û Weşanên Kurdî“ hatibû amadekirin.

Konferansê rojekê dom kir û di sê panelan de li ser “wergêrên Şerefnameyê”, "Dîrok û Nasname“ û “Rehendê Ol, Civak û Huner“ gotar hatin pêşkeşkirin. Ji ber ku konferansê tenê rojekê dom kir û gellek mijar hatibûn amadekirin, ji bo her mijarekê tenê 20 xulek hatibûn destnîşankirin û ev yek jî li gor gellek beşdarvanan zêde kin bû. Salimê Casim yê amadekarê konferansê derbarê konferansê de wiha axivî: "Bi alîkariya saziya Gelavêj me ev konferans amade kir, lê ew pereyê ku bo me hatiye xerickirin pirr kêm e, lê dîsa me karîn 3 panêlan di rojekê de pêşkêş bikin." Derbarê nerazîbûnên hinek beşdarvanan li ser kurtbûna demê ji bo mijaran, Selîmê Casim got ku wan pîlan kiriye bu salê pêş baştir û berfirehtir vê konferansê saz bikin û konferans çend rojan bidome."


Wêne: Rûdaw

**Ji ber kêmbûna demê, ji bo her mijarekê tenê 20 xulek hebûn**

Yek ji beşdarên konferansê Dr. Serwer Ebdulah derbarê konferansê de nerînên xwe wiha anîn ziman: "Di 20 xulekan de nikarim mijara xwe pêşkêş bikim, lê ez dikarim hindek ji naveroka mijara xwe bixwînim, weke eşkere kirina yekem wergêrê biyanî yê alman, bi navê Heinrich Alfred Barb ku wî Şerefname wergerandiye, ne ku Zernof ku gellek jêder wî weke wergêrê yekem nîşan didin. Lê wisa nîne, Barb yekem bûye." Dr. Serwer Ebdulah zêdetir behsa wergerên Şerefnameyê dike û dibêje: "Ez li jêderan geriyame, çûme gellek jêrxaniyan (Keller) daku jêderan bi dest ve bînim. Min gellek kovarên beriya 150 salan dîtin, eve 3 sal û nîve ez pêve mijûl im û demek nêzîk de ezê projeya xwe eşkere bikim." Dr. Serwer Ebdulah behsa giringiya Barb dike û dibêje "Barb yê ku Şerefname wergerandiye ye û ji her kesî berfirehtir li ser nivîsandiye."

Raspardeyên konferansê ji aliyê Dr. Azad Ebdulah ve hatin xwendin û di raspardeyan de hat xwestin ku konferans bibe bingeh ji bo sazdana konferansên mezintir, daxwaz hat kirin ku alîkarî bê kirin digel wan xwendekarên ku dixwazin li ser Şerefnameyê lêkolînan bikin bo wergirtina master û doktorayê û bizav jî bê kirin ku zêdetir xwendekar bi vî karî rabin. Herwiha hat xwestin ku konferans bê berfirehtir kirin û heyama çend rojan berdewam bike, ji bo ku bêtir vekoler mijarên xwe bi berfirehtir pêşkêş bikin. Herwiha pêşniyaz hat kirin ku vekolînek li ser tabloyên Şerefnameyê bê kirin, ji bo diyar kirina rastiya wan tabloyên xwediyê Şerefname, ka ew bi rastî tabloyê Şerefxan Bedlîsî ne, yan jî efsaneyî ne.

Beşdarekî konferansê ku nexwest navê wî bê eşkere krin, jî Rudawê re got ku derdorê 20.000 hezar Dolar bo vê konferansê hatine xeric kirin. Rêveberiya konferansê ne amade bû ku ji Rûdawê re vê hejmarê piştrast bike.

www.arsivakurd.org

# Leyla Zana bo Kurdan referendûmê dixwaze



## » Zana diyar dike ku sîstema 'Xweseriya Demokratîk' ji bo daxwazî û pirsgirêkên Kurdan têr nake

*Siyasetmedara kurd û parlamentera BDPê Leyla Zana heftiya borî li bajarê Munchenê beşdarî panela "50 Saliya Koçberiya Kurdan bo Munchenê" bû. Zana di axaftina xwe de yekîtiya gelê kurd xwest û got: "Mafê bi xwe biryardanê mafê gelê kurd e jî. Gelê kurd Xweseriya Demokratik kêm dibîne û rêya referendûmê pêşniyar dike."*

*Hevkarê me Reşad Ozkan bo xwendevanên me bi Leyla Zana re axivî.*





Wêne: Rûdaw

**Rûdaw: Birêz Zana hûn bi xêr hatin bajarê Munchenê. Hûn hinek li bajêr geriyan? Bajar xweşiya we çû?**

**Leyla Zana:** Roja we jî bixêr. Ji bo vê hevpeyvînê dixwazim pêşî ji rojnameya Rûdawê re spas bikim. Erê Munchen bajarekî pirr xweş e.

**We di konferansa Munchenê de ji bo Kurdan bahsa referendûmê kir. Hûn karin hinek naveroka wê pêşniyara xwe vekin? Mebeste we çi ye ji referendûmê ?**

Me bahsa referendûmeke ji bo Kurdan kir. Me çima kir? Ji ber ev sedsal in Kurd ji bo xwe statuyekî dixwazin. Lê belê dewletên serdest wek Îran, Îraq, Sûriye û wek Tirkiyeyê dibêjin di Rojhilata Navîn de divê Kurd nebin xwedî ti tiştek û çi ji destên wan tê dikin. Carinan tên cem hev, carinan dijbertiya hevdu dikin. Lê gava ku Pirsgirêka Kurd tê rojevê, îtifaqa çaralî çêdikin. Niha li Îraqê Kurdan statuyek bidestxistine, lê li Tirkiyeyê, li Îran û Sûriyê ti statuyeke wan tune.

Li gor peymana Neteweyên Yekgirtî "mafê bi xwe biryardanê yê gelan" mafê Kurdan e jî. Divê zilm û neheqiya li ser netewa kurd bi dawî were û xwestekên gelê kurd jî li ser erdê Kurdistanê derbas bibe.

## Hikûmet di amadekirina destûra nû de ji bo Kurdan mafên kesayetî pêşniyar dike

**Çima heta niha Kurdan yekîtiya xwe ya netewî ava nekirine?**

Di nava xwe de perçe perçe bûne, bi hestên eşîrî hereket kirine. Azadî, otonomî, federalî, serxwebûn jî, ew sîstem hemû mafên Kurdan in. Mînak, divê li Tirkiyeyê jî sîstemek federalî wek ya Almanyayê bê avakirin. Biryarên navendî bila Enqere bigire, yên herêmî jî bila Kurd bigirin. Kurd divê bi rêya referendûmekê herin ser sindoqan û bo dahatûya xwe dengên xwe bidin. Ji sindoqan çi derkeve bila derkeve, otonomî be, konfederalizm be, federasyon be, serxwebûn be, çi encam ji sindoqan derkevin divê em qebûl bikin. Divê Kurd bo dahatû û qedera xwe, wekî netewên din, biryara xwe bidin û hemû dinya jî divê biryara wan qebûl bike.

**Ma şertên referendûmê hene? Tirkiye ji bo vê pêşniyarê amade ye?**

Belê, îro şertên referendûmê hene. Ango îro hebûn û nebûna Kurdan edî nayê axaftin, tiştên tên axaftin çareseriya Pirsgirêka Kurd e. Niha li Başûrê Kurdistanê federasyonek çêbûye. Di çarçoveya qanûna bingehîn ya Îraqê de Herêma Kurdistanê xwe bi xwe îdare bike. Lê em dinêrin ku Tirkiye naxwaze navê Kurdistanê lê bike. Tiştek ecêb e. Mesela li Kanadayê herêmek heye bi navê Quebek. Serê 4 salan carekê diçin ser sindoqê, yên serxwebûn jî dixwazin û yên otonomî û federasyonê jî dixwazin hene. Kî çi dixwaze dengê xwe eşkere dide. Gava dengê gel hebe, ti kes nikare li dijberê wê bêhurmetiyê bike. Ez dibêjim êdî wexta biryarê hatiye, di destpêka sedsala 21. de bila Kurd jî bo referendumê herin sera sindoqan, gel çi dixwaze bila hemû xal tê de hebin, bila qedera xwe bi destê xwe tayîn bikin. Le belê Dewleta Tirk dixwaze Pirsgirêka Kurd li gor xwe çareser bike. Derket holê ku AKP û serokwezîr Erdogan Kurdan dixapînin. AKP projeya darbeya 12ê Îlonê ye. TRT 6 jî projeya hikûmeta Ecevit bû, ne ya AKPê yê.

Kurd naxwazin bi çekan şer bikin, le belê wan Kurdan neçar kirin ku tekoşîna çekdarî bikin. Em bo çareseriya Kêşeya Kurd diyalogê dixwazin. Heta niha li Tirkiyeyê li dijî Kurdan çi bûyerên ne baş hatin kirin divê hemû belgeyên wan bên eşkerekirin.

**Ji bo destûra ku dixwazin nû bikin, hûn çi dibejin, hereketa kurd çi difikire?**

Di amadekirina destûra nû de bo Kurdan hikûmet ser mafên kesayetî disekine. Em jî dibejin em ne şexs in, em komek in, em gel in, em miletek in, mafên miletan çi bin em jî ew dixwazin. Heta Pirsgirêka Kurd neyê çareserkirin, pêşiya Tirkiyeyê jî nayê vekirin.

Aliyekî tevgera kurd jî xweseriya demokratîk dixwaze, ango otonomî. Baş e, otonomî îro çiqas têra 20 milyon însanan dike?

## Eger ne humanist bûya, zilm bikira, ew jî dibû xwedî dewletek

Çiqas Kurd bi vê sîstemê qayîl dibin? Ev jî bi rastî mijarek nîqaşê ye. Lewma ez dibêjim bila gel biryarê bide. Erê me îlan kir, lê belê di şertên îro de gelê kurd xweseriya demokratîk kêm dibîne. Kurd li hemû cîhanê dinêrin û dibêjin çima tenê Xweseriya Demokratik? Dibêjin ew tenê têra me nake".

**Sedemên belavbûna Kurdan çi ne?**

Çiqas hêz û rêxistin û tevgerên kurd hebin jî, her yekî xwestiye tiştek ji bo xwe avabike. Ka em li qada medenî û raya giştî ya civakên pêşveçû binêrin, hemû gelan bi dest û bi îradeya xwe pêşerojên xwe avakirine. Qedera xwe bi xwe tayîn kirine. Gelê kurd jî çima qedera xwe bi xwe tayîn neke? Gelê kurd li cîhê xwe qebîl e, berê li wê derê cihê xwe çêkiriye û kî hatiye jê re sînga xwe vekiriye, gotiye 'fermo ez dixwazim bi te re erdê xwe, av û axa xwe, hemû dewlemendiyên xwe parve bikim'. Ti car li hemberî ti kesî derneketiye. Zilm û tahde û neheqî jî li ti kesî nekiriye. Bo hemû kesî alîkarî kiriye. Lê me alîkariya kê kiribe, di dawiyê de, piştî ku karê wan bi Kurdan nemaye, derbe lêxistiye. Yanî miletê me hem mazlûm e û hem jî miletekî humanist e. Eger ne humanist bûya, zilm bikira, ew jî dibû xwedî dewletek, welatekî azad, nasname, çand û jiyanek bi rûmet. Lê dema Kurdan tiştek xwestibe, pêşiya wan hatiye girtin. Ne dijminên Kurdan, ne jî sistema dinyayê tiştekî layîqê Kurdan nabînin. Gotine 'Kurd eşkiya ne, eşîr in, cudaxwaz in û terorîst in'. Li aliyê din Kurdan jî xwe gellek qels hiştine. Qelsbûna wan ji kû derê tê? Di nava gel de têkiliyên xurt, dewlemend û germ dananîne. Çawa sînor li ser axa Kurdistanê danîne, ez karim bêjîm sînorên wekî hesin jî di nav mêjiyên Kurdan de avakirine. Kurdan cesaret nekirine bi hev re yekitiyê çêbikin. Lê wexta têkiliyek germ di navbera çar aliyan de hebe, wê hê baştir be. Ev gel wek malbatekê ye, bi çar alî hatiye perçekirin û hatiye peçiqandin.

**Çima Kurd û bi taybetî jinên kurd ji Leyla Zana hezdikin?**

Ez hertim dibêjim, ez xebatkar û zimanê vî gelî me. Her kesekî Kurdistanî di rewşa min de xwe dibîne. Jinên kurd çima zêde ji min hezdikin? Jinên kurd bêtir hatine perçiqandin. Ez pirsgirêkên wan hertim tînim ziman, çi dikeve ser milên min ez dikim. Yanî ev hezkirin ne tiştekî şexsî ye. Jinên kurd bi salan hatine fetisandin, hatine tunekirin, nehatine hesibandin, lewma pêdiviya wan wekî avê bi azadiyê heye. Jin jî karin bi her awayî di siyaset, ticaret û hêla civakî de wekî hemû zilaman cîhê xwe bigrin.

Projeyên me yên mezin hene bo jinên kurd. Yek li Amedê û yek jî wê li Hewlêrê be. Em ê konferansa xwe ya jinan ya 2. li Hewlêrê li dar bixin. Em dixwazin li her çar aliyên Kurdistanê konferansên jinan pekbînin.

***Hevpeyvîn: Reşad Ozkan***

www.arsivakurd.org

## Şirove



Şerm nakî jinê dikujî?

**Hêmin Ebdulla**

Pêwîstiya lawên neteweyên bindest bi dîtina rêyan heye heya ku bala cîhanê bikişînin ser doza xwe. Hinek Kurdên rûniştevanên Ewropayê jî ew rê dîtine. Car caran jinekê dikujin û civaka rojavayî vedicinqînin! Di karê markêtingê de rêbazek heye, dibêje: "Baştirîn reklam ew e gotinên xirab li ser te bên gotin", hinek Kurdên rûniştevanên Ewropayê jî bi tekûzî ji vê gotinê fêm kirine!

Di çend rojên buhurî de bavekî kurd li Almanyayê keça xwe ya 13 salî di nav xwînê de vegevizand. Berî demekê ciwanekî kurd, dîsa li Almanyayê, hevjîn û xesûya xwe dane ber gulleyan. Berî wê bi çend mehan jî, li Swêdê, jineke kurd ji aliyê merivên wê ket ber kêran û jiyana xwe ji dest da. Berî wan jî, keçeke kurd li Brîtanyayê hat parçe parçe kirin û polîsan ew di hundirê çenteyekî de di nava bexçeyê mala wan de dîtin. Ev bûyer mistek in ji gelek karên zêde yên hinek mêrên "şerefmend"ên Kurd li Ewropa ku wisa kiriye hemû cîhan bizanibe em çiqasî jindost û azadxwaz in!

Hinek kes wiha diramin ku sedemê belavbûna kuştina jinan di nav Kurdan de ew e ku piraniya Kurdan Misilman in. Bêguman ev ne rast e. Jiber ku di nav Hindusên Hindistanê û bawermendên Xirîstiyan ên Efrîqayê de jî jinkuştin heye. Kesê ku berê xwe bide arşîva medyayên Brîtanyayê yan welatekî din ê Ewropayê, mînaka zêdetir ji dozeke jinkujiyê dibîne. Di baweriya min de, hoyê serekî yê jinkuştinê şaş hizrîna mêran e (gava dibêjim mêr, mebesta min "civaka mêrane" ye jî) derbarê nirxê jinê weke mirov.

Min ji gelek mêrên kurd ên rûniştevanên Ewropayê bihîstiye ku rêya wî ketiye fermangeheke dewletî û jinekê karê wî pêk ne aniye, dû re bi tasewas di nav civata mêran de behs kiriye: "Karê min nekirin, lê jê nexweştir ew bû ku jinekê karê min nemeşand." Li Hollanda gellek salan wezîra karûbarên penaberan jineke serhişk a qeherî û tosin bû, hinek ji penaberên mêr ên kurd ku daxwaza wan a wergirtina mafê penaberiyê bi salan bê bersiv mabû, digotin: "Qehra wê yekê me dikuje ku tiştê tê serê me jinek tîne serê me."

Xortên ciwan ên kurd hene li Ewropayê ji dayikbûne û li vir mezin bûne, lê belê gava mijar tê ser dildarîkirina xuşkên wan, bi pozbilindî dibêjin: "Ger tiştekî wiha li wan bibihîzin, wan bi qurbana gulleyekê dikin." Gava xortek wiha jî dibêje, bavê wî destê xwe datîne ser milê wî û dibêje: "Kurê bavê xwe ye!" Bi rastî jî wisa ye û ew xort kurê bavê xwe ye. Jiber ku bavek ji zaroktiyê ve hatibe fêrkirin asta mêraniya wî bi wê yekê bipîve ku lêva çend keçan gez kiriye, çawa qebûl dike mêrek hinarika xuşk yan keça wî maç bike?! Xortek jî kurê wî bavî be çawa xuşka xwe (ger şeytan zora wê biribe û xortekî ew xapandibe) neke qurbana gulleyekê?

Her çiqasî jinkuştin tawan e, lê ji min re weke mêrekî kurd hêsan e ji jinkujekî hevneteweya xwe fêm bikim. Dizanim medya û perwerdeya me karekî wiha berçav nekirine da ku me qayîl bike ku şerm e tu jinekê bikujî. Saziyên parastina mafên jinên kurd bi berdewamî hewl didin ku xwe jî wê diyarokê vedizin. Medyayên me di şopandina nûçeyên jinkujiyên hovane de texsîriyê nakin, lê belê kêşe ew e ku ew li ser wan bûyeran zêdetir kar dikin ku qewimîne, ne ku ewên ku heye di siberojê de biqewimin. Ew peyama ku girîng e bidin mêrê kurd ew e ku: xweşî be û tirsî be, weke çawa mêr mirov e wisa jî jin mirov e. Weke çawa mêr dildariyê dike wisa jî jin bi hewaya evîndariyê mest dibe. Eger pîvana exlaqê xirab hebe, êdî divê ji jin û mêran re weke hev be. Rast e pêkhateya me ya fîzîkî cihê ye, lê nirxê me weke mirov yek e. Lewma jî ne mafê tu yekî ji me ye biryarê li ser mirin yan jiyana yê din bidin.

Vêga ji ber krîza aborî siberoja Ewropayê ketiye destê jinekê. Rojnameyên Ewropî qala wê yekê dikin ku her çend rojan carekê Obama telefona şêwirmenda Almanyayê Angella Merkel dike, heya wê razî bike rola rizgarkera YE bileyize. Qaşo her ji bo heman mebestê Sarkozy (mêrê nehîte yê Fransayê!) rojane ligel Merkel diaxive. Ji wan mêrên "şerefmend" ên Kurd yên ku li Ewropayê rûdinin û bi niyet in di siberojê de keç, jin yan xuşkên xwe bikin "qurbaniyên gulleyekê" dipirsim: Gava çarenivîsa yekîtiyeke siyasî ya mezin weke Ewropa jinek biryarê li ser bide, şerm nakin bi jinkuştinê biramin?

Di encama testê de derket ku herdu zarok ji wî ne

# Samanê kor du zarokên xwe kuştin

Guman kiriye ku hevjîna wî karê bê exlaqî kiriye û zarok ne ji wî ne: Kurê xwe yê 7 salî û yê 1 salî dide ber gulleyan...

**Soran Behaedîn**

Samanê kor, ji ber kuştina du zarokên xwe hatiye zindankirin, niha rewşa wî ya derûnî xirab bûye, ji bilî serhejandina berdewam, tiştekî din nake. Hevalekî wî yê zindanê digot: "Dilê hemû zindaniyan bi dîtina Saman tundtir dibe, Saman piştî ku pê hesiya herdu zarok jê bûn, bi tevahî têk çû."

Saman Sebah Sabir (31), rûniştevanê taxa Serweran a Hewlêrê, roja 02.01.2009ê herdu zarokên xwe bi navê Sîracedîn Saman (7) û Sîvan Samanê (1) li gundê Bêstane dane ber gulleyan û kuştin. Ew niha li zindana girtin û guhastinê ya Hewlêrê ye û hê jî nehatiye mehkûmkirin.

Saman pêşmergê PDKê bû, di şerê PDK û PKKê de di sala 1995ê de birîndar bû, herdu çavên wî kor bûn, 10 bû jiyana hevseriyê pêk anîbû, kurê wî yê mezin Sîracedîn xwendekarê sinifa yekê ya seretayî bû.

Hevjîna Saman, berê ji Rûdawê re gotibû, Saman bi navê çûna bo sûkê destê Sîracedîn girt û Sîvan jî hembêz kir û çûne derve, lê "taksiyek girtibû, biribûn Bêstane û çek jî ligel wî hebû, gulleyek di nava devê Sîracedînê 7 salî dabû, 3 gulle jî li dest û sing û serê Sîvanê yeksalî dabûn."

### Jehr daye zarok



Saman di lêkolînê de li tawana kuştina du zarokên xwe mikur hatibû û sedemê wê jî vegerandiye wê yekê ku nikaribû sozdariya bavîniyê bide zarokên xwe, lewma ev kar kir. Herwiha di lêkolîna polîsan de mikur hatibû ku çend rojan berî kuştina zarokên xwe jehr daye yekî ji wan. Diya herdu zarokan niha ji Saman cihê bûye, û li ser cezakirina Saman pêgir e. Ew dibêje: "Divê Saman bê îdamkirin."

Saman di wan demê ku roj li derve ye li hewşa zindanê rûdine, gava zindaniyên mahkûmkirî û girtî dibînin, li ser doşekeke piçûk rûdine û hinek xwarin li ber destê xwe datîne û dixwe, wî bi berçavkeke reş çavên xwe yên kor veşartine, û hertim serê xwe dileqîne.

Aware ku ligel Saman li zindanê ye, dibêje: "Carna wiha dibe Saman bi saetan rûdine û tenê serê xwe ba dide." Di wê dema ku Rûdaw li ba wî bû, zêdeyî saetekê serê xwe ba dida.

### "Jina wî karê bê exlaqî kiriye"

Aware qala wê yekê kir ku wî û Saman, pir hevrêtiya hev kirine û mijara xwe ji zindaniyan re vegotiye, lê piştî demekê têk çûye: "Piştî ku encama testa wî û zarokên wî hat û polîsan jê re gotin ew zarok ji te ne ew têk çû. Dibêjin wî zarokên xwe kuştin ji ber guman kiribû ne jê bin. Ev demeke jina wî jî telaqa xwe jê wergirtiye, niha tenê diya wî serdana wî dike."

Rêveberê polîsên Hewlêrê Ebdulxaliq Telet ragihand, kêşeya Saman li ser wê yekê bûye, Saman gotiye "jina wî karê bê exlaqî kiriye", Ebdulxaliq got jî: "Pêşî Saman jî ligel jina xwe di wî karî de beşdar bûye û pê razî bûye, pişt re Saman dev jê berdaye û di dema poşmanbûnê de têk çûye û zarokên xwe kuştine. Dû re bi testan derket ku zarokên Saman jê bi xwe ne."

# Li Amedê Mizgefta Şêx Seîd tê çêkirin

**Bawer Çem** Amed

Navê rêberê serhildana kurdan a sala 1925ê Şêx Seîd ku ji aliyê Dewleta Tirk ve weke "xayîn" dihate binavkirin, êdî wê di mizgeftê de bijî. Mirîdên Şêx Seîd li Amedê li ser navê wî mizgeftekê ava dikin.

Li ser navê Şêx Seîdê Kal ku di 1925ê de serhildana kurdan dabû destpêkirin û li Amedê tevlî 47 hevalên xwe ji aliyê Dewleta Tirk ve hatibû darvekirin, mizgeftek tê çêkirin. Mizgeft li Navçeya Peyasê ya Amedê ji aliyê "Komeleya Çêkirina Mizgeftan a Medresetuz Zehra" ve tê çêkirin. Hêjayî gotinê ye ku endamên vê komeleyê mirîdên mala Şêx Seîd in. Li gorî agahiyên ku ji serokê komeleyê Îhsan Yargici hatin wergirtin, ji salekî zêdetir e xebata çêkirina mizgeftê hatiye destpêkirin û ew ê heta salekî biqedînin. Yargici da zanîn ku ew ê mizgefteke luks a 4 qatî çêbikin û wiha got: "Li Amedê ev mizgeft wê bibe duyemîn mizgefta mezin. Divê mirov navê mezinan li mizgeftan bike. Li hemberî alîkariya ji bo vê mizgeftê eleqeyeke mezin heye. Di warê hiqûqî de heta niha ti pirsgirêkek derneketiye. Bawer nakim pirsgirêk derkeve jî. Em dixwazin hemû mirîd û xelkê me ji bo çêkirina mizgeftan alîkariyê bikin." Li gorî agahiyên ku hatin bidestxistin, tenê li Amedê nêzî sed hezar mirîdên mala Şêx Seîd hene.

### Serhildana Şêx Seîd

Di 1925ê de bi pêşengiya Şêx Seîd li hemberî Dewleta Tirk serhiladeneke kurdan hatibû destpêkirin. Serhildan di demeke kurt de li 14 bajaran belav bibû. Lê serhildan ji aliyê Artêşa Tirk ve bi xwînê hate tepisandin. Di encamê de serhildan şikest, Şêx Seîd û 47 hevalên wî li Qada Deriyê Çiyê ya Amedê hatin sêdarkirin. Hêjî cihê gora Şêx Seîd û hevalên wî nayê zanîn. Malbata Şêx Seîd dixwaze cihê gora wî bê eşkere kirin.

www.rudaw.org


Wêne: Rûdaw




## Li bajarên kurdan vîrûsa HIV belav dibe

# Bo kar çûn Başûr, vîrusa HIV bi xwe re anîn

Kesên ku li Amedê bi wan re vîrusa HIV hatiye dîtin, li Başûrê Kurdistanê bi jinan re ketine têkiliya zayendî.

Bawer Çem Amed

Li bajarên kurdan heta 5 sal berê jî nexweşên AİDSê tunebûn, lê di nava 3 salan de bi 24 kesan re nexweşiya AİDSê hate dîtin. Tişta balkêş ew e ku ji 8 kesên dawî yên bi vê nexweşiyê ketine 4 kes, li Başûrê Kurdistanê xebitîne.

Nexweşiya AİDSê bi vîrûsa HIVê dikeve laşê mirovan. Derketina pirzikan di dev û lêvên mirovan de, xwêdana zêde, zeîfbûn, virikîbûn û quxika zêde, nîşaneyên vê nexweşiyê ne. Li cîhanê û Tirkiyeyê her roj hejmara nexweşên AİDSê zêde dibin. Li gorî agahiyên Wezareta Tenduristiyê ya Tirkiyeyê li Tirkiyeyê berî 5 salan hejmara nexweşan 2 hezar bû. Lê îro ev hejmar derketiye 5 hezar kesan. Li bajarên kurdan jî heta 2004ê nexweşiya AİDSê tunebû. Nexweşê yekemin di sala 2004ê de hat tespîtkirin. Ev kes jî, li Almanyayê karker bû û li wir jiyabû. Piştî vê, di sala 2009ê de 12, di 2010ê de 4 û îsal jî 8 kes bi teşhîsa AİDSê tedawî dîtin. Ji ber ku Wezareta Tenduristiyê ya Tirkiyeyê, Zanîngeha Dicleyê weke "Navenda Şêwirmendiya Dildarî" hilbijartiye, hemû nexweşên AİDSê yên bajarên kurdan tên Zanîngeha Dicleyê.

### 'Nexweşiya xwe bi tesadûfî hîn dibin'

Ji Zanîngeha Dîcleyê Hîndekar Doç. Dr Mustafa Kemal Çelen, diyar kir ku ji van 8 kesên dawî 5 kes li Amedê hatine tespîtkirin û ji van 5 kesan jî 4 kes li Herêma Kurdistanê xebitîne û vê nexweşiyê ji wir girtine. Çelen, diyar kir ku, ew kesên ku bi wan re vîrûsa HIV hatiye dîtin, li Başûrê Kurdistanê bi jinan re ketine têkiliya zayendî û ev tişt gotin: "Em dikarin bêjin, tekiliyên zayendî yên bi sik, li Îraqê zêde ne. Çimkî, zêde kes li Afrîkayê tên û li Bakurê Îraqê yan jî li Îraqê wekê karker dixebitin. Em dizanin ku vîrûsa HİV herî zêde li welatên Afrîkayê tê dîtin. Têkiliyên zayendî yên bê kontrol ji bo HİVê hertim bi xwe re talûkeyeke mezin tîne."

Kemal Çelen, destnîşan kir ku piştî vîrûsa HIV kete laşê mirov jî carna mirov heta 10 salan jî bi nexweşiya AİDSê nahese û piştî 10 salan nîşaneyên vê nexweşiyê derdikevin holê. Çelen, wiha berdewam kir: "Kesên ku me bi wan re AİDS tespit kiriye, bi tesadûfî hîn dibin ku nexweş in. Ji ber vê yekê kesên ku mîkrop girtine piştî 2-3-8 salan diçin nexweşxaneyê û dixwazin xwîn bidin. Dema ji bo xwîndayînê test çêdikin, derdikeve holê ku ew kes bi AİDSê ketine. An jî bi piranî mêr, ji ber ku bêyî xwe biparêzin dikevin têkiliya zayendî, ditirsin û tên ba me. AİDS wisa derdikeve holê." Çelen, bi bîr xist ku AİDS nexweşiyeke kronîk e, tedawiya wê heye û ev tişt gotin: "Em dikarin bi tedawiyê jiyana nexweşên xwe 20-30 sal dirêj bikin. Lê xilasbûna ji vê nexweşiyê tune ye. Kesên ku têkiliya zayêndî ya homoseksuel dijîn jî di bin vê rîskê de ne."

### AİDS çi ye?

Vîrûsa HIVê ya AİDSê piştî ku pergala mirov a pênegirtinê (immunoloji) zeîf dikeve, xwe nîşan dide. AİDS, ji kurteya Acquired Immunodeficiency Syndrome ev nav girtiye. Divê neyê jibîrkirin ku kesek beriya nexweşiya AİDSê dibe ku bi salan berê vîrûsa HIV girtibe. Vîrûsa HIVê bi têkiliyên zayendî yan jî bi rêya xwînê derbasî laşê mirov dibe. Vîrûsa HIVê bi rêya xwîn, sperm û avika vajînayê derbasî kesên din dibe. Ev rewş di dema seksa vajînal, anal an jî oral de çêdibe. Mirov dikare bi bikaranîna prezervatîfeke ku ji lateksê hatiye çêkirin, xwe ji vîrûsa HIVê biparêze. Vîrûsa HIVê hem bi têkiliyan zayendî ya bi mêran û hem ji bi ya jinan re dikeve laşê mirov. Ger nexweşiyeke zayendî ya mirov hebe, ev vîrûs zûtir dikeve laşê mirov. Bi rêya derziyeke qirêj û derziyên (ger paqij nebe) çêkirina deq û piercingan jî vîrûsa HIVê dikeve laşê mirov.

## Li Silêmanî û Kerkûkê 4 kifşên nû yên AIDSê

Newzad Mehmûd

Rêveberê xweparastina saxlemiya Silêmaniyê, daxwaz ji rûniştevanên Herêma Kurdistanê dike ku metirsiyên AIDSê liberçav bigirin û her bi çareseriya pizîşkî, saxlemiya xwe paşguh nexin: "AIDS, nû berê xwe dide herêma me, em li pêşber metirsiya belavbûna wê ne."

Rêveberê xweparastinê li rêveberiya giştî ya saxlemiya Silêmaniyê Dr. Rizgar Elî eşkere kir di nava 11 mehên îsal de li Silêmaniyê 3 kesên din bi AIDSê ketine û hejmara nexweşan li Silêmaniyê gihiştiye 6 kesan: "Zêdeyî 10 kesên biyanî jî ji Silêmaniyê li welatên wan hatine vegerandin."

Li Herêma Kurdistanê, nexweşên AIDSê wê demê tên dîtin ku ji ber hestkirina bi êş û azaran serdana pizîşkan dikin, wê çaxê jî êdî dema çareserkirinê qediyaye. Dr. Rizgar, ji xelkê bajêr re dibêje ku çeka nehiştina AIDSê di destê wan bi xwe de ye, ew jî bi testa berdewam bo xweparastina ji hemû nexweşiyan: "Baştir e ji encamdana seksê li derveyî xêzanê dûr bikevin, bila condom bikar bînin, condom ji sedî 80 rê li ber derketina AIDSê digire."

### Li Kurdistanê 19 kes hilgirên AIDSê ne

Li gor serjimêriya Wezareta Saxlemiyê ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê niha 19 kes li Hewlêr, Dihok û Silêmaniyê hilgirên virusa HIV in. Ev nexweş di bin çavdêriya pizîşkî de ne û hikûmet mehane dermanê nexweşiya wan dabîn dike. Tekane rê bo dîtina nexweşiyê testa xwînê ye, lê rêveberê xweparastina saxlemiya Silêmaniyê dibêje ku zehmet e ew kar bê kirin: "Hejmara xelkê Silêmaniyê milyonek û 8 hezar kes e, nabe testa wan hemû kesan bê kirin, tekane rêya me testkirina xwîna nexweşan û wan kesan e ku bo neştergeriyê têne nexweşxaneyê."

### Bazirgan û pispor jî hebûn

Vebûna zêdetir a civaka kurdî û zêdebûna pêwendiyên bazirganî û aborî yên Herêma Kurdistanê ligel derve, du hoyên diyar ên zêdebûna AIDSê ne, ku rêveberê xweparastina saxlemiya Silêmaniyê behs dike û dibêje: "Ji wan 10 biyaniyên ku ji ber ADISê hatine vegerandin, bazirgan û pispor jî di nav wan de hebûn."

www.arsivakurd.org

# Nîşanên metirsîdar bo Kurdan piştî rûxandina Esed

**Edîb Ebdulhemîd***

Xebata Kurdan li dijî partiya Beesê û rejîma Beşar Esed tenê di vê dema dawî de derneketiye, lê dîroka wê vedigere destpêka salên 60î yê sedsala buhurî. Kurdan bê navber li dijî îdeolojiya erebîtiyê xebat kirine ku herdem li Komara Erebî ya Sûriyê Kurd paşguh dikirin û mafên wan înkar dikirin. Gava Kurd di buhara 2004ê de li Qamişlo li dijî rejîma Esed serî hildan û hejmareke zêde jiyana xwe bo azadî û çareseriyeke dadmend ji dest dan, Erebên Sûriyê piştgiriya Kurdan nekirin, û di rûbirûbûna hovîtî û zulma rêjîmê de jî qala cesareta Kurdan nekirin.

Kurd hatin paşguhxistin û şoreşa wan hat vemirandin û bi cudaxwaziyê hatin tawanbarkirin. Niha di van bûyerên dawî de, Kurd xwe weke beşekî girîng ên civaka Sûriyê dibînin û hesteke Sûriyê nîşan dane û piştgiriya Erebên Sûriyê dikin. Di xwepêşandanan de, ew dirûşmên ku Kurd bilind dikin li ser wan hatine nivîsîn: Gelê Sûriyê yek e.

Di aliyê dîrokî de, Kurdan di dîroka Sûriyê de beşdariyeke aktîf kirine û postê serokatiyê wergirtine. Hinek ji wan Kurdên naskirî, wek Yûsiv El-Ezme û Îbrahîm Henano li dijî dagîrkeriya Sûrî ji aliyê Frensayê, şer kirine.

Di hundirê çend mehên borî de, opozisyona Sûrî çend civîn saz kirin bona dariştina pîlanekê bo siberoja Sûriyê. Kurdan kêm zêde beşdarî di wan civînan de kirin, lê dixuye gelek partiyên Erebî dixwazin rola Kurdan kêm bikin. Di konfiransa opozisyonê de ku di Tîrmehê de li Stenbolê hat sazkirin, daxwaza Kurdan ku weke duyemîn gruba netewî li Sûriyê bên naskirin, rastî bersiveke erênî nehat.

Daxwaza duyemîn a Kurdan daku navê “Komara Erebî ya Sûriyê” bê guhertin û bibe Komara Sûriyê bû sedemê acizbûna rêberên opozisyonê ku ev daxwaz wisa dîtin ku hewldaneke bo bêparkirina Sûriyê ji nasnameya xwe ya rastî.

Heysem Malih ku lîderekî diyar ê Ereb ê opozisyonê ye û serokê kongra rizgariya niştimanî ye, ji rojnameyeke hollandî re got, “Kurd bo mafên xwe dixebitin, lê niha ne dema wê yekê ye.”

Gava derbarê beşdariya Kurdan di xebata dijî rêjîma Esed de pirs jê hat kirin, Malih got: “Ew daxwaza wekheviyê ligel Ereban dikin, lê Kurd li kû derê bûn wê dema ku Îxwan Muslimînan di destpêka salên 1980ê de dijî Hafiz Esed serhildan kirin?”

**Demokrasiya ku opozisyona Sûriyê behs dike, dibe ku Kurdan lixwe negire.**

Ligel damezirandina civata niştimanî ya Sûriyê di Cotmehê de weke pêkhateyeke giştî û rewa, serokê vê civatê Burhan Xeliyon, di hevpeyvînekê de ligel kanaleke almanî, di bersiva pirsekê derbarê daxwaza Kurdan ya naskirina wan weke neteweya duyemîn li Sûriyê, got: “Kes nikare têgeha bingehînî ya Erebbûna Sûriyê ji nav bibe. Sûriyê welatekî Erebî ye û hebûna grubên din ku bi zimanên cuda daxivin nayê wateya ku çav ji nasnameya piraniyê biniqînî ji ber xatirê kêmjimaraniyê.

Xeliyon li ser ekrana kanala almanî, Kurdên Sûriyê şibandin koçberên Muslimanên Fransayê. Gotinên Xeliyon wisa li gellek Kurdan kirin ku dakevin ser cadeyan û bêjin: “Em ne koçber in Xeliyon, em li ser xaka xwe ya dîrokî dijîn û demokrasî nayê wateya paşguhxistina Kurdan.”

Xeliyon weke cihgirê Esed tê dîtin ger rêjîma Sûriyê hilweşe û her lewma jî şibandina Kurdên Sûriyê bi koçberan ji Kurdan re pir nexweş e. Neteweya kurd nêzîka ji sedî 10-15yê xelkê Sûriyê pêk tînin.

Derxistina Kurdan ji bizava opozisyona Sûriyê dibe ji ber du hoyan be: Yekem, serdestbûna Îxwan Muslimîn ku hêz û bandora xwe ji Tirkiyeyê werdigire û li hember hikûmeta Tirkiyeyê wefadar e. Civata niştimanî ya Sûriyê di Cotmehê de bi şermezarkirina êrîşeke PKKê ku bû sedemê kuştina 24 leşkerên Tirk, pêwendiyên xwe yên xurt ligel hikûmeta Tirkiyeyê nîşan dane.

Hoyekî din dibe ku ew be ku lîderên Ereb bi qest partiyên kurdî venaxwînin semîner û civînên xwe da ku tevlî biryardanê nebin.

Di dawiya Cotmehê de, partiyên kurd jî civata xwe ya niştimanî pêk anîn ku 10 partiyan lixwe digire. Yekemîn gava wê civatê ew bû ku şandekê bişîne Qahîreyê ji bo ligel Yekîtiya Dewletên Erebî diyalogê bike. Li wir, nûnerên kurd pêşniyara mafê çarenivîsê bo Kurdên Sûriyê pêşkêş kirin. Hinek ji Ereban guh dane vê pêşniyarê, lê civata niştimanî ya Sûriyê vê yekê red kir.

Rêberên opozisyona Sûriyê ku li dijî rejîma Esed dixebitin û bo girtina desthilatê piştî rûxandina Esed xwe amade kirine, hinek têgeh û ramanên wan weke yên Esed in. Ev jî tê wê wateyê ku ew demokrasiya ku ew behs dikin dibe ku Kurdan lixwe negire.

**Rojnamevanekî kurdê Sûriyê ye û li Hollandayê dijî. Endamê komeleya rojnameger û nivîserên biyanî ye li Hollandayê ye û bi zimanê îngilîzî, hollandî û erebî dinivîse.*

# Li Brîtanyayê kampanyayek bi mebesta nasîna Enfalan weke jenosîd

**Gary Kent***



Parlamentoya her welatekî di qonaxên cuda cuda de derbas dibe, hin caran bi xwesteka wê û hinek caran jî li derveyî xwestina wê dibe. Asta xoşewîstiya parlamentoya Brîtanyayê daketineke mezin lixwe girt gava CDyeke parlamenî ku kitekitên xerciyên parlamenteran tê de bû, ket destê rojnameyekê.

Vê CDyê ew sîstema xirab a parlamenê eşkere kir ku rê dide xerckirina pereyekî zêde, ji ber ku bi baweriya hikûmetên yek li dû yekê yên Brîtanyayê ku dikarin ji berpirsiyariyên xwe rizgar bin, ger xerciya parlamenteran zêde bikin.

Margret Thatcher bi awayekî berçav xerciya parlamenteran zêde kir, baş tê bîra min ji ber ku wê çaxê meaşê min jî pir zêde kir.

Lê bi awayekî giştî meaşê parlamenteran kêm bûye û hertim ew mînak hebûye ku gava parlamenterek rêveberê şîrketekê yan rêveberê şaredariyekê dibîne, xwe bi meaşekî kêmtir dibîne.

Li gor tecrûbeya min, parlamenter bo bidestveanîna pereyan, nabe parlamenter. Bi piştrastî jî gelek parlamenter amade ne bo bidestveanîna kursiyek li parlamentyê meaşên kêmtir werbigirin. Bi her hal, parlamenter ku hertim divê xwarin û vexwarinê bo parlamenterên mêvan bikrin û jiyana wan ji birêvebirina du malan pêk hatiye, dest bi bikaranîna wê sîstema nerm kirin heya weke tawîza xwe bikin bi wan xerciyên zêde yên ku dikirin.

Gava xelk jî bi wê xerciya ecêb hesiyan, acizî û dilgiranî li tevahiya Brîtanyayê derket. Pişt re sîstem ket binî çavdêriyeke tund û vêga jî sîstema xerciya parlamenteran gihiştiye radeyekê ku pirr berovajî dema buhurî ye.

Di wê bûyerê de jî, çend parlamenter rastî dadgehkirin û zindankirinê hatin, lê belê di heman demê de jî tevahiya xeleka siyasî hest bi perçiqandinê kir. Ev jî bû sedemê wê yekê ku gelek parlamenter berî xilasbûna dema wan dev ji postên xwe berdin yan jî bên dûrxistin, ku ev jî piştî hilbijartinên 2010ê li Brîtanyayê bû sedemê guherîna tevahî ya sîstema karê parlamenteriyê û bi giştî 232 parlamenterên nû hatin parlamentoyê.

Lê ligel vê yekê jî van parlamenterên nû hizr û enerjî û nêrînên cuda anîne nava parlamentoyê, yek ji wan diyardeyên nû jî ew e ku karên wan şefaf bin û herwiha niha parlamenter li ser internêtê xerciyên xwe kifş dikin. Parlamenterek ewqasî ji dil e ku mînaka pakbûnê be, çend yasa ji xwe re danîne ku qet karê lobîkariyê neke, pêşwaziyê li saziyên biyanî neke û tevî geştên derveyî welat nebe û piraniya karê sekreterê xwe jî bi xwe dike. Ku ev jî bo piraniya parlamenteran, mezinkirina meseleyan e û di baweriya wan de ku lobîkarî ji bo têkilbûna xelkê alîkar e û geştkirin jî bo welatên derve çavê te vedike û herwiha derfeta karê bazirganî jî bo şîrketên Brîtanyayê çêdike, qazanca hemû aliyan jî tê de heye.

Herwiha çendîn hewldan jî hebûn ku xelk di biryarên parlamenê de zêdetir beşdariyê bikin û kampanyayên ser internêtê ku di baweriya parlamenteran de bi vî rengî bandora xelkê li ser biryarên parlamenê dibe. Hevwelatiyên Brîtanî dikarin kampanyaya her meseleyekê bikin ku bi xwe bixwazin û ger di wê kampanyayê de karîn sed hezar îmzeyan kom bikin, êdî parlamen dikare li ser biaxive.

Parlamenterê Brîtanî Robert Halfone, derbarê meseleyên Kurdistanê de kesekî pir çalak e, li Brîtanyayê li ser nizmkirina nirxê xaz û benzene dest bi kampanyayekê kir, wiha bawer dikir ku bi milyonan Brîtanî ji ber giraniya nirxê sotemeniyê rastî rewşeke nebaş hatine û neçar bûne otomobîlên xwe bifiroşin û vê yekê jî li ser pîşesaziya trafîkê bandor kiriye.

Vê kampanyayê karî zêdeyî sed hezar îmzeyan kom bike (ku ev jî bo gotûbêjkirina pirsekê li parlamentoya Brîtanyayê hejmara pêwîst a daxwaza hevwelatiyên Brîtanyayê ye), di encamê de rojek hat diyarkirin li parlamento bo vê meseleyê û dû re parlamentoyê biryar da ku dev ji wê pîlanê berde ku bi niyet bû bacan zêde bike.

Herwiha weke agahdar im, ji bo gotûbêjkirina damezirandina dewleta Kurdistanê kampanyayek hat çêkirin, di pênaseya kampanyayê de hatibû “piştî rûxandina dewleta Osmanî, pirsa damezirandina Kurdistaneke serbixwe, yek ji pirsên herî giring ên Rojhilata Navîn bû. Piştî azadkirina Îraqê jî di sala 2003yê de, dînamîka siyasî ya Îraqê bi awayekî berçav guhertiye û di demekê de rewşa Îranê ne baş e û rejîma Sûriyê ber bi rûxandinê diçe. Em daxwaz ji hikûmeta Brîtanî dikin ku ji bo damezirandina dewleta serbixwe ya kurdî piştgiriya xwesteka netewî ya Kurdan bike.” Lê karekî zêde ji vê kampanyayê re nehat kirin û tenê 3 hezar îmze jê re hatin komkirin.

Ji bo xelkê Kurdistanê sê yadgariyên mezin hene di 2013yê de. Yekem, bîranîna 30. saliya bêserûşûnkirina 8 hezar Barzaniyan; duyemîn, 25. salvegera kîmyabarankirina Helebçe û Enfal. Sêyem jî 10. salvegera azadkirina Îraqê.

Gruba tevahiya partiyên parlamentoya Brîtanyayê jî, li ser internêtê dest bi kampanyayekê kiriye ku daxwazê ji hikûmeta Brîtanî dike, Enfalê weke jenosîd bide nasîn.

Kampanyayeke rêkûpêk dikare tevahiya Kurdên derve û Brîtaniyan jî bike yek û dibe ku bi gotûbêjkirina parlamenê jî bidawî bê, serencam Brîtanya Enfal weke jenosîd binasîne. Ev jî xaleke girîng e û ji ber ku çiqasî xelk agahdarên dîroka Kurdan bin, egera dubarenebûna karekî weke Enfalan kêmtir dibe.

** Gary Kent serokê Grûba Partiyên Brîtanya li Herêma Kurdistanê ye*

www.arsivakurd.org


Wêne: Rûdaw

### Wezîrê swêdî, Göran Hägglund, bo Rûdawê:

# Me bihîstiye ku dermanê sexte li Herêma Kurdistanê tê bikaranîn

» Swêd dixwaze di sektora tendirustiyê de alîkariya Herêma Kurdistanê bike û bibe çavkaniyeke girîng.

*Roja 14ê vê mehê şandeke Hikûmeta Swêdê bi serokatiya Wezîrê Tendirustiyê û Karûbarên Civakî yê Swêdê Göran Hägglund serdana Herêma Kurdistanê kir û ligel berpirsên saxlemiyê yên Herêma Kurdistanê behsa wan rêyan kirin ku hikûmeta Swêdê bo pêşxistina sektora saxlemiyê li Herêma Kurdistanê çawa dikare alîkariya Kurdistanê bike. Haglond di hevpeyvîna ligel Rûdawê de qala serdana xwe kir.*

**Rûdaw: Çawa hûn berê xwe didin warê saxlemiyê li Herêma Kurdistanê?**

**Göran Hägglund:** Bawer dikim bingeheke Herêma Kurdistanê ya xurt heye, ji ber hebûna hejmareke zêde ya kesên têgihiştî û bi ezmûn. Lê em wê jî dizanin ku derfeta çendîn salên geşbûnê ji destê vê sîstemê çûne, lewma bi mebesta geşkirina vê sîstemê û xurtkirina vê geşbûnê, pêwîst e çav li sîstema saxlemiyê ya welatên din bikin. Em jî weke Hikûmeta Swêdê pir kêfxweş in bi gihandina pisporî û ezmûna xwe. Em li Swêdê di rewşeke aram de jiyane û demeke dirêj li ber destê me hebûye ji bo pêşxistina sîstema xwe ya saxlemiyê. Her warek ku bi baweriya Hikûmeta Herêma Kurdistanê pêwîstiya wê bi wê yekê heye sûdê ji Swêdê werbigire, em amade ne alîkariyê bikin.

**Weke mînak çawa dikarin alîkariya Herêma Kurdistanê bikin di aliyê pêşxistina sîstema saxlemiyê de?**

Me di vê serdana xwe de qala çendîn rêyan kir ligel berpirsên Herêma Kurdistanê ku em weke Hikûmeta Swêdê dikarin alîkariya Herêma Kurdistanê bikin û bibine çavkaniyeke giring bo sektora saxlemiyê li Herêma Kurdistanê û standarta sîstema tendirustî li herêmê bilind bikin. Swêd bi wê yekê tê naskirin ku xwediyê yek ji baştirîn sîstemên saxlemiyê li cîhanê ye û me kariye li ser bingeha pêdiviyan xizmetguzariya tendirustî pêşkêşî her kesekî bikin.

**Ew rê çi ne?**

Yek ji wan perwerdekirin û rahênankirina karmendên saxlemiyê ye, yan dabînkirina amûrên saxlemiyê, ku li Swêdê çendîn şîrketên me yên naskirî hene û ew jî pirr dixwazin bên vir û ezmûn û pergalên xwe bidin Herêma Kurdistanê. Herwiha çend şîrketên me yên dermanan hene ku dikarin beşek bin ji pêşveçûna erênî ya herêmê.

**Şîrketa Awamedica yekemîn şîrketa xwecihî ya Kurdistanê ye di aliyê çêkirina derman de. Gelo Herêma Kurdistanê çawa dikare sûdê ji şîrketên bi vî rengî bibîne?**

Bi dîtina min ev çîrokeke pir xweş e û di vir de jî tiştê giring ew e ku kesekî te heye [mebesta wî Dr. Baram e, rêveberê kargeha Awamedica li Hewlêrê - Rûdaw] dema 20 salan li Swêdê jiyaye û me di wan salan de sûd jê wergirtiye û dûre wî kesî biryar daye ku vegere welatê xwe û ezmûna xwe jî aniye û kariye wê kargeha giring damezirîne. Ev gaveke giring e ji bo Kurdistanê, ji ber ku bi vekirina wê kargehê, wî kariye derfeta kar ji gellek kesan re dabîn bike û morala kesên din jî bilind kiriye ku ew jî weke wî li welatekî din in û ezmûna wan di warekî diyarkirî de heye. Ew bawerî daye wan ku ew jî dikarin vegerin û xizmeta welatê xwe bikin.

**Standart û qalîteya dermanên Herêma Kurdistanê çawa dibînî?**

Me ji aliyê gellek kesan ve bihîstiye ku li vir dermanên sexte tên bikaranîn, ev ne ku tenê xirab e, lê pirr metirsîdar e jî. Lewma pêdiviya her welatekî bi qalîteya kontrolê heye li ser wan dermanan û pêdivî bi şîrketên bi vî rengî heye, heya ku berhemeke baş û bawerpêkirî pêşkêşî hevwelatiyên Îraq û Herêma Kurdistanê bike.

*Hevpeyvîn: Hawar Ebdulrezaq*

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Cûreyek mêşan, mêşê keran – Paşa û mîrên Hindistanê (berepaş) – Gep, gez, parçe (berepaş). 2- Porê gijomijo û tevlihev – Weke hev, nêzîkî hev, dişibin hev – Dewlemendê gund. 3- Sebir, aramî, bêhnfirehî – Hiş, fahm. 4- Navekî zilaman, pêt, agir – Teqawîtbûyî, kesên ku hew bi kêrî kar tên – Notayek muzîkê. 5- Êş, keder, elem, arîn – Paytextê Siûdî Erebistanê. 6- Kevirê hişk, kevirê ku ji mîneral û krîstalan çêbûye (berepaş) – Cok, kanala piçûk, rêya avê (berepaş). 7- Bîrewer, şazera, bîrbir, alim. 8- Mîmar, kesê ku îmarê dike (berepaş) – Notayek muzîkê. 9- Destnîşankirina tiştekî nêr – Mêrê bizinê, bizina nêr. 10- Li ser xwarin tê xwarin, textê xebatê – Şil, bi av, ne ziwa.

**Serejêr:** 1- Xwarina goştê li ser hestî, mijtina hestîyan. 2- Destnîşankirina tiştekî – Kanalek televizyona Îtalî – Şên, geş, lêkirî. 3- Kesê romanan dinivîse, nivîskarê romanan. 4- Ne hişk, elastîkî (berepaş). 5- Ne buha, bi nîvê heq, ne giran. 6- Zaroka kerê, cehşik (berepaş) – Heywanek gir, gayê nav avê. 7- Markayek trimbêlên Fransî, kurtkirina Renault (berepaş) – Can, ruh (berepaş). 8- Welatek super, Obama serokê wê ye – Amnesty Înternatîonal (berepaş). 9- Kesê cot dike, xebatkarê gund. 10- Şax, kat, filîz – Dadwerî, mafdarî, heqî. 11- Paq, ran, çîm. 13- Agir, heya, namûs. 14- Qêrîn, awaz, deng (berepaş). 15- Werhasil, ez serê we neêşînim. 16- Kesên zad diçinin, karkirên çinîna zad.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | ■ | | | | | ■ | | | | |
| 2 | | | | | ■ | | | | | | | | ■ | | | |
| 3 | | ■ | | | | | | | | ■ | | ■ | | | | |
| 4 | | | | | ■ | | | | | | | | | ■ | | |
| 5 | | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | | |
| 6 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |
| 7 | | ■ | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | |
| 8 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 9 | ■ | | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | |
| 10 | | | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 126

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | S | E | D | Û | B | Î | S | T | Û | N | E | H | ■ | M | E | H |
| 2 | E | M | A | R | E | ■ | A | E | ■ | A | Z | R | A | Î | L | ■ |
| 3 | R | Î | N | ■ | R | I | Z | D | E | ■ | D | I | L | ■ | Ç | Ê |
| 4 | B | A | A | S | ■ | R | ■ | W | ■ | R | A | K | E | L | Î | H |
| 5 | I | N | S | A | N | ■ | D | E | M | A | | | | | | |
| 6 | L | ■ | Î | N | A | E | I | C | ■ | K | | | | | | |
| 7 | I | B | N | Î | ■ | E | L | ■ | E | Ş | | | | | | |
| 8 | N | A | ■ | Y | A | R | M | E | T | Î | | | | | | |
| 9 | D | A | M | E | Z | R | Ê | N | E | R | | | | | | |
| 10 | Î | S | A | ■ | A | E | ■ | E | R | Ê | | | | | | |

Mezopotamya
Weqfa Şandina Cenazeyan




Mezopotamya canazeyên we dişîne herçar beşên Kurdistanê

Di rojên dijwar de em bi we re ne

Tel.: 02331 - 47 33 886
Mobil: 0178 - 18 56 970
0172 - 27 24 163




Navnîşan: Frankstr. 6 • 58135 Hagen/Almanya
E-Mail: sigortaci-alp@hotmail.de
www.mezopotamya-cenazefonu.com

www.arsivakurd.org

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Sertav ji maqarneyan pirr hezdike



Sertav navê wî yê rast e lê dêbavên wî bi hêviya aşitiyê li cîhanê û Kurdistanê navekî din jî li wî kirine: Bariş. Dêbavên Sertav xelkê Bakûrê Kurdistanê ne lê Sertav roja 01.10.2006ê li Almanyayê, li bajarê Hemer hatiye dinê. Sertav hem diçe bexçeyê zarokan, hem jî dibistana muzîkê. Ew ji piyanoyê gellekî hezdike û herwiha li sazê jî dixe. Lê xwarina maqarneyan jî hobbyekî Sertav e û ew gellekî ji wan hezdike, ew dikare hertim maqerneyan bixwe. Sertav ji bilî zimanê dayikê kurdî (zaravê kirmanckî), bi tirkî û almanî jî diaxive.

## Simko li rêya rast digere



Serê salê ye û Simko dixwaze biçe diyariyan ji xwe re bîne. Divê Simko di kîjan rêyê de biçe, daku bigihije cihê diyariyan?

# Birûsk



Birûsk ji elektrîkbûna ewran pêk tê. Ewrên bi elektrîkê dagirtî vala dibe û dibe birûsk. Gellek caran ev birûsk di nav tilpên ewran de diçin û tên, carinan jî ji tilpên ewran ber bi erdê ve tên xwarê, wê demê em dibêjin "birûskê veda". Dengê birûskê nîşan dide ku çirûska wê çiqasî germ û xurt e.

## Welatê me

# Gewer





Gewer yek ji navçeyên Hekariyê ye û dikeve bakûrê Kurdistanê. Gewer bi xwe dikeve deştê lê li dora bajêr çiyayên bilind hene. Yek ji wan Çiyayê Cîlo ye ku di hêla bilindbûnê de sêyem çiyayê bilind e li Kurdistanê. Hejmara şêniyên navenda bajarê Gewerê zêdeyî 60.000 kes in. Gewer di warê xwedîkirina ajelan û çandiniyê de deverek dewlemend e. Herêm bi xwezaya xwe ya balkêş havînan deverek gellek xweş e.

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

www.arsivakurd.org